Hejmar:11 Sep 2004'ê Zayînî

# agiri

Rezbera 1383'ê Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye

Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

# RAYEDARÊN HIKÛMETA ÎSLAMÎ YA ÎRANÊ, BERPIRSYARÊ TERORÎZMA DEWLETÎ LI MÎKONOSÊ NE





**12 sal li ser cinayeta terorîstî ya Xwaringeha Mîkonos li Elmanyayê, ku tê de Sekreterê Giştî yê PDK a Îranê, Dr. Sadiq Şerefkendî û Fetah Ebdulî, berpirsyarê têkiliyên Partiyê li derveyî welat, Humayon Erdelan, nûnerê Partiyê li Elmanya û Nûrî Dêhkurdî, siyasetvan û dostê Partiyê hatine şehîd kirin, derbas dibe. Di vê derheqê de bi alîkariya 2 rêxistinên Îranî, Kanûna Penaberên Siyasî li Berlînê û Kanûna Girtiyên Siyasî, roja 28.06.1383'ê Rojî (18.09.2004), rê û resmek li bajarê Berlînê hate lidarxistin. Çend kesayetiyên Elmanî, Îranî û Kurd di wê rê û resmê de seba terora Mîkonosê û rola rêberên Komara Îslamî ya Îranê di encamdana vê cinayetê de axivîn.**

**Li Kurdistanê jî bi hinceta 12'mîn salvegera şehîdbûna Dr. Şerefkendî û hevalên wî, di binkeya Deftera Siyasî ya PDK a Îranê de, rê û resmekî berfireh rêve çû. Piştî xwendina sirûda neteweyî ya *"Ey Reqîb"* û deqîqeyek bêdengî bo rêz girtin ji canê paqij yên şehîdên Kurdistanê, gotara Deftera Siyasî ji aliyê Birêz Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî ve hate xwendin. Piştre çend sirûd û helbestên şorişvanî hatine pêşkêş kirin.**

**Deqa gotara Deftera Siyasî di rûpela 2 ya vê hejmarê de dikeve ber çavê we xwendevanên hêja.**

## Boş: Emirîka nahêle ku Îran bibe xwediyê çekên etomî



**Di hevpeyvîneke de bi televizyona FOX re derheq bernameyên etonmî yên hikûmeta Îslamî ya Îranê, Serok Komarê Emirîka Corc W Boş, helwêsta Emirîkayê anîn zimên.**

**Rûpela 10**

## Yekemîn Kongreya Yekîtiya Jinên Demokrata Kurdistana Îranê



**Rûpela 11**

## Êrîşên terorîstî yên 11ê Septemberê di sêyemîn salvegera xwe de



Di roja 11'ê Septembera 3 sal berî niha de, 2 teqînên mezin yên terorîstî, Emirîka û mirovahî hejand. **Rûpela 5**



**Destve anîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranekî Demokratîk ya Federalî de**

Birêz Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê di rê û resma bîranîna şehîdên terora Mîkonmosê de:

# ŞEHÎD DR. SEÎD MÎNAKA KADROYEKE BAŞ Û JÊHATÎ YÊ HIZBÊ Û SÎMAYA DEMOKRAT Û HEVALEKÎ EMEGDAR YÊ RÊ Û RÊBAZA DR. QASIMLO BÛ



**Birêz Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê li dema xwendina gotara Deftera Siyasî di rê û resma 12'mîn salvegera bîranîna şehîdên Mîkonosê**

**Hevalên xweştivî !**
**Xuşk û birayên birêz !**

Izna min bidin ku ez seba beşdariya we ya gerim di rê û resma 12'mîn salvegera rêz girtin ji şehîdên bûyera Mîkonosê, ji aliyê Deftera Siyasî ve bi xêrhatina we bikim û sipasê jî ji wefadariya we bikim.

**Hevalên birêz:**

Her wek hûn agehdar in 12 salan berî niha di êvariya roja 26'ê Xermanana sala 1371'ê Rojî hemberî 17'ê Septembera 1992'an de, hevalê birêz û xebatkar Dr. Sadiq Şerefkendî naskirî bi Dr. Seîd, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û Kekê Fetah Ebdulî endamê Komîteya Navendî û nûnerê Partiyê li derveyî welat û Kekê Humayon Erdelan kadroyê xebatkar yê partiyê û nûnerê partiyê li Elmanya, û birêz Nûrî Dêhkurdî bi pîlaneke îxanetkarane ya rêberên rejîma Komara Îslamî ya Îranê û ji aliyê girûpên wan yên terorîst ve li Xwaringeha Mîkonosê li bajarê Berlîna Elmanyayê, ketne ber destrêjiya gulên wan û hatne şehîd kirin. Dr. Seîd û hevalên wî piştî bi dawî hatina Kongira Entirnasyonala Sosyalîst tevî parek ji têkoşerên Opozisyona Îranî bi merema guherîna bîr û rayan û gihîştina bi bernameyeke siyasî ya hevbeş dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê li Xwaringeha Mîkonosê li hev civiyan. Piştî demeke kurt terorîstên rejîmê ji derfetê mifah wergirtin û ew şehîd kirin û daxeke giran êxistne ser dilê xebatkarên PDK Îranê û gelê Kurd û hemû evîndarên azadî û demokrasiyê di seranserê Îranê de.

Dr. Seîd û hevalên wî di demekê de bi destê xedr û îxanetê hatne şehîd kirin ku PDK Îranê û gelê Kurd hêşta birîna şehîd kirina rêberê me yê mezin Dr. Qasimlo Sekreterê Giştî yê PDK Îranê li ser dilê wan qenc nebibû. Careke din rêberên kevnarperwer yên Komara Îslamî ya Îranê PDK Îranê tûşî bûyereke din ya tal kirin û gelê Kurd jî daxdar kirin. Xwe jî tûşî şermezariyeke dinê kirin. Komara Îslamî û rêberên wê yên cinayetkar jêve bûn ku piştî şehîd kirina Dr. Qasimlo bi lêdana derbên giran û bi jan li cendekê PDK Îranê, tevgera şorişvan ya xelkê Kurdistanê wê tûşî bêhêvîbûnê be û dê bigihîje meremên xwe yên qirêj. Diyar bû ku rejîma Komara Îslamî a Îranê ji dîrokê ders wernegirtibû, nedizanî xebatkarê PDK Îranê her wekî piştî şehîd bûna Dr. Qasimlo nîşan dan ku ev cure bûyerane kar li ruhiya wan nakin. Piştî şehîd bûna Dr. Seîd jî ew nikarin bigihîjne meremên xwe, û rêvîngên rê û şopa Qazî, Qasimlo û Şerefkendî di vê ceribandinê de jî dê serkevin û alaya partiya xwe dê bilind ragirin û riha şehîdên xwe jî şad bikin.

**Xûşk û birayên birêz!**

Bas kirin li ser kesayetî, jiyan û serpêhatiya rêbereke jêhatî wek Dr. Seîd di vê derfeta kurt de kareke ne hêsan e. Çimkî serbilindî û şanaziyên wî bo PDK Îranê ev qas zaf in ku bi dehan kombûn û civînan dixwaze. Eger lêreda her çiqas bi kurtî jî be emê aliyek ji biyografî û ceribandinên wî yên bi nirx bas bikin û rêz û hurmetê ji şanaziyên wî bigirin.

Xebatkarê mezin yê gelê me Dr. Şerefkendî li sala 1316'ê di malbateke welatparêz yê gundê Terexe ya Bokanê de ji dayîk bûye. Her di temenê zarokatiyê de babê xwe ji dest dide û berpirsyariya wî dikeve ser milê birayê wî yê mezin Mamosta Hejar, Helbestvanê welatparêz yê gelê me. Xwendina xwe hetanî kuta kirina dîplomê wek şagirdeke zîrek û serwext di bajarên Bokan, Mihabad û Tewrêzê de bi dawî anî. Piştî vê çendê di "Danşseraya Alî" ya Tehranê û di sala 1383'an de "Lîsansa Şîmi"yê wergirt û wek mamosta vegeriya Kurdistanê û li bajarên Urmiye û Mihabadê mijûlê wezîfeya pîroz ya dersgotinê bû, bi egera jêhatî û xweştivîbûna wî di nava şagirdan de ji aliyê dezgeha sîxur ya rejîma Paşatiya Mihemed Riza Şa ve kete bin zêrevaniyê, û piştî demekê tevî çend kes ji hevbîrên xwe bo bajarê Erak û Kereçê hate dûrxistin.



Di sala 1351'an de vî karî ji borseya xwendinê ya Wezareta Zanistê bo domandina xwendinê û bo wergirtina Duktoraya xwe mifahê werbigire û here Firansayê. Di sala 1352'an de ji rêya rêberê me yê mezin Dr. Qasimlo ve tevî berneme û siyasetên PDK Îranê nasiyar bû û pêwendiya rêxistinî tevî partiyê girt, serbarê karê mamostayiyê tevî endamên partiyê pêwendî girt û siyasetên PDK Îranê bi xwendekarên xwe re dinasand. Di sala 1358'an de piştî hiloşîna rejîma Paşatiyê bû Şêwrê Komîteya Navendî û ji wê demê pêde pileyên berpirsariya partiyê hetanî Sekreteriya Giştî destve anî û di hemû berpirsariyan de bi pisporiyeke zaf ve erkên xwe rêve dibirin.

Şehîd Dr. Seîd mînaka kadroyeke baş û jêhatî yê hizbê û sîmaya demokrat û hevaleke emegdar yê rê û rêbaza Dr. Qasimlo bû. Wek rêbereke zana û lêhatî di hemû waran de pispor bû.

Di warê rêxistinî de miroveke xodan bîr û bawer û bihelwêst bû. Bê pirinsîpî û firsettelebî û tembelî ji çi kesê qebûl nedikir.

Di warê ragehandin û propagendeyê de, hêz û şiyaneke bê mînak hebû. Xwediyê behreyeke taybetî bû. Di wî çaxî de ku berpirsyarê dezgeha ragehandina partiyê bû, di pêşde birina siyasetên PDK Îranê de roleke bi bandord hebû. Di warê siyasî û dîplomasî de miroveke serwext û hûrbîn bû. Gelek zû dizanî ku merema mirov çi ye. Li ser pirinsîpên dîplomasiyê gelek şareza bû, lewma bandoreke zaf li ser aliyê hember didanî û dibû dostê wî.

Di warê rêveberiyê de jî, miroveke bi bername û micid bû, û yek ji wan kesane bû ku di pêgehandina kadroyên partiyê de bernameyeke taybetî hebû. Ev mînaka miroveke serkevtî bû. Serbarê vê taybetmendiya şorişvanî,

## Gotara Deftera Siyasî ji aliyê birêz Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê di rê û resma bîranîna şehîdên terora Mîkonosê de hate Pêşkêş kirin

**Doma: R. 2**



Dîmenek ji beşdarên rê û resma 12'mîn salvegera şehîdên Mîkonosê

Dr. Seîd li warê kesayetiyê ve jî miroveke cesûr û netirs bû, di dostatiyê de dilsoz û dilpak bû. Biheq jî navê Sadiq naveke hêjayî kesayetiya vî mirovê mezin bû.

**Hevalên birêz !**

Her wek me bas kir qurbaniyeke din yê cinayeta rejîma Komara Îslamî a Îranê şehîd Fetah Ebdulî Endamê Komîteya Navendî ya Partiya me li derveyî welêt bû. şehîd Fetah yek ji kadroyên jêhatî yê partiya me bû. Di dema xebata siyasî de, wî gelek dilsozane erkên xwe yên hizbî rêve dibirin û di hemû berprsyariyên xwe yên hizbî de mînaka berpirsareke jêhatî bû.

Şehîdekî din yê vê cinayetê hevalê Humayon Erdelan Kadroyê çalak û nûnerê partiyê li Elmanyayê bû.

Birêz Nûrî Dêhkurdî, dostê kevnar yê partiya me û kesayetiyê naskirî yê Opozisyona Îranê û xebatkarê bi emeg yê rêya azadî û demokrasiyê, yek ji şehîdên din yê vê cinayetê bû.

**Xûşk û birayên hêja!**

Bê şik û guman şehîdkirina van xebatkaran bo malbatên wan û bo PDK Îranê û bo gelê Kurd bûyereke nexweş û dilêş bû ku qet nahê ji bîr kirin. Lewma di seranserê cîhanê de tevî PDK Îranê hevderdî hate kirin û ev cinayete şermezar kirin û daxwaz ji dewleta Elmanya kirin ku bikujên vê bûyerê peyda bike û bide destê edaletê. Bi xweşî ve polîs û dezgeha dadê ya Elmanyayê berevajî helwêsta kasibkarane ya dewleta Utrîşê ku li hember terora rêberê me yê mezin Dr. Qasimlo û hevalên wî de bêdeng ma û dadmendî kire qurbanê berjewendiyên xwe yên aborî, gelek cesûrane helwêst girt û bikujên wan girtin. Piştî lêkolînê biryara xwe ya dîrokî di berwara 10.4.1997'an de ragehand ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê û rêberên wê, ev pîlane darêtin û ji aliyê girûpên terorîst ve bi rêve çûye. Ev helwêsta dewleta Elmanya ji aliyekê ve serkevtin û şanaziyeke mezine bo wan aliyên ku ev biryarên dîrokî dan û ji aliyeke din ve jî destpêkek bû bo aşkira kirina naveroka rejîma Komara Îslamî û siyasetên wê yên terorîstî û dûr ketina wê ji civaka navneteweyî .

**Hevalên birêz !**

Hekî piştî zêdetir ji 25 salan, em nirxandinekê li ser siyasetên rejîma Komara Îslamî bikin, em digihîjne vê encama jêrîn:

- Ev rejîma bi binpêkirina mafê mirovan, azadî, demokrasî û hemû bihayên mirovahiyê hatiye naskirin.
- Bi sebebkarê destengî, bêkarî û parvemana welat ji karwanê pêşkevtinê hatiye naskirin.
- Bi sebebkarê bingehî yê fesadê û tûşkirina ciwanan bi mewada muxedir û dehan diyarokên din yên pîs û qirêj yên civakî navê xwe derxistiye.
- Bi dujminê mafê jinan û çavkaniya bê hurmetî kirin bi kesatiya jinê hatiye naskirin.
- Di siyaseta navneteweyî û herêmî de jî, berdewam destêwerdanê di kar û barên welatan de diket û bi aşkira dijatiyê tevî pirosêsa aştiyê li Rojhilata Navîn, bi taybetî di pirsa aştiya Felistînê de diket. Hevkariya girûpên terorîst yên Efxanistan, Lubnan, Îraqê û zaf cihên din diket. Serbarê vê hemû şikestê di siyasetên xwe de taze mijûlê bidestxistina çekên tevkuj e. Ev siyaseta wê jî tevî yasayên navneteweyî hevnagire û ji bilî teslîmbûn û rûreşiyê tişteke dinê jêre namîne.

Li hemberî vê siyaseta dijî gelî ya rejîmê, PDK Îranê bi siyaseta xwe ya osûlî û rastbînane karîye zêdetir ji caran baweriya gelê Kurd û azadîxwazên welatê me bo aliyê xwe rakêşe û tevî partî û rêxistinên şorişvan yên Îranî dostatî û hevkariyê biket, û her di vê demê de bi kom û komeleyên mirovhez yên cîhanî re têkiliya dostane bigire û wan ji naveroka rejîma Komara Îslamî ya Îranê agehdar biket.

Tevî eniya demokrasîxwaz û dijî terorîzm û dîktatoriyê siyaseta xwe rêk bixe û li ber ronahiya berhevdanên xwe yên siyasî, ku di rapora Komîteya Navendî bo kongireya 13'ê ya PDK Îranê de jî hatiye, bernameya xwe ya siyasî û bi kiryar bide xuyakirin.

Ceribandina xebata gelên azadîxwaz bo rizgarbûn ji destê rejîmên dîktator û kevneperist û guherînên piştî bi dawî hatina şerê sar, bo rejîma Komara Îslamî ya Îranê derfeteke nû bû ta ku dest ji siyaseta tund û tûj û karên xwe yên terorîstî bikêşe, pêrewiyê ji pirensîpên siyasî yên serkevtî yên serdem biket û mafê neteweyî yê gelên Îranê bi taybetî gelê Kurd misoger bike û derfetê bide xelkê Îranê da ku bikarin bi azadî bijîn.

Lê Komara Îslamî ya Îranê tenanet piştî emelyatên terorîstî yên 11'ê Septembera 2001'an li Wilayetên Yekbûyî yên Emirîkaiyê û hilveşandina rejîmên kevneperest û dîktatorên Taliban li Efxanistanê û Bees li Îraqê ji dîrokê ders wernegirtiye û herwisan dirêjiyê dide siyasetên xwe yên berê.

Pirosêsa serkevtina demokrasiyê û rizgarbûn ji dîktatorî û kevneperestiyê di herêmê de bo bizava azadîxwaz ya gelên Îranê ceribandineke bi mifah e. Lewma hewce ye ku em bi piştqahîmbûn bi xebata gelên Îranê û hevkariya tevî hêzên şorişvan yên xwe micidtir ji caran xebata xwe bidomînin û gelên Îranê bighîjne armancên wan.

Em di 12'mîn salvegera şehîdên bûyera Mîkonosê careke din tevî riha paqij ya şehîd Dr. Seîd û hevalên wî peymanê nû dikin ku heya destveanîna armancên wan, rê û şopa wan ya pir ji şanazî bidomînin.

Pîroz be rê û bîranîna şehîdên Mîkonosê.

# PDK a Îranê, Partiya nûjen ya civaka Kurdistanê

**Mihemed Salih Qadirî**




Bi berçav girtina vê rastiyê ku di dîroka şoriş û serhildanên gelê kurd de hertim bi egera nebûna rêxistin û rêberiyeke bikom û yeketiyeke siyasî û herwiha hebûna çand û ramanên eşîretî û olî û nexwandewariya civaka Kurdistanê ku bibûne egera lawazbûna seha neteweyî û astengên bingehîn li ser rêya serkevtinê çêkiribûn, ji her demekê zêdetir hewcehiya avabûna partiyeke nûjen ku bikare wan kêmasiyan li ortê rake, ketibû rojevê.

Lewma ji dayikbûna PDK a Îranê di 15.08.1945'an de wek şorişeke mezin tê nirxandin, ku di kawdanên siyasî- civakî ya wê demê ya civaka Kurdistanê de karî wan tilisman bişkîne û wê hêz û qaweta bingehîn ya gelê Kurd ku bi salan bû hatibû zihabûn û temirîn, careke din bi terzeke nûjen û zanistî bidete vejandin û bikete hêzeke bêbin û di Kurdistan û cîhanê de bo xizmeta armanc û sitratêjiya neteweyî bixebitîne.

Modern bûna PDK Îranê tê vê wateyê ku di destpêka avabûna wê de, armancên wekî: Demokrasî, mafên neteweyî, aştî û mafên mirovan bûne bingeha rê û rêbaza xebata wê û di pêxema gihîştin bi wan armancên pîroz de çi caran hewar bo emrazên nebaş û nigetîv nebiriye.

Bi damezrîn û xebata zanistî ya PDK a Îranê hemberî rejîmên Paşayetî û Wilayeta Feqîh ya Îslamî di Îranê de perda reş ya zordariyê li ser gelê Kurd hate vêdebirin û tovê bawerî bixwebûn û seha neteweyî di nava gel de hate çandin.

Girîngiya avabûna PDK a Îranê wek rêxistineke nû û nûjen di wî heyamî de eva bû ku bo yekem car vê partiyê karî civatên xelkê Kurdistanê bi awayeke rêxistinî di bin alaya xwe de kom biket û xebata gelê Kurd di Kurdistana Îranê da tevî xebata seranserî ya gelên Îranê ku bo demokrasiyê xebat dikrin, bi hevre girê bidet û piştgîriya hêzên azadîxwaz yên cîhanê bo mafên gelê Kurd destve bînît.

Bi vî awayî, em dibînin ku PDK a Îranê her ji dema avabûna xwe ve cehd kiriye ku fakterên navxweyî û derveyî ji bûna gihîştin bi armancên xwe pêkve nêzîk biket.

PDK a Îranê her ji destpêka avabûna xwe ve, girêdana têkiliyên bihêz û stiratêjîk tevî Kurdên parçeyên din yên Kurdistanê kiriye hêwinê rêbaza neteweyî ya xwe û li gorî wê berjewendiya neteweyî, ji çi cure alikariyekê bo partî, rêxistin û saziyên welatparêz û neteweyî yên parçeyên dinê yên Kurdistanê xwe neparastiye.

PDK a Îranê bi vê mentiq û felsefeya nû karî bi xebata nûjen ya xwe qasê zanebûna neteweyî û rewşenbîrî ya gel pêşde bibet û li ser bingeha pirensîpên demokratîk rêya pêşkevtina civakê di warên cur bi cur de xweştir biket. Partiya Demokrat di heyamê 59 sal temenê tijî ji xebat û tekoşîna xwe de, kariye bi wan pîvan û mikanîzmên zanistî gelek deskevt û mîratên bihagiran pêşkêşî gelê Kurd biket ku, ewanê jêrîn parek ji wan in:

**- Avakirina Komara Kurdistanê di sala 1945'an de, ku bo yekem car gelê Kurd qedera xwe destve girt,**
**- Danîna sirûda neteweyî ya Ey Reqîb wekî sirûda fermî ya Komarê,**
**- Afirandina navê pîroz yê Pêşmerge û avakirina Sipaha Milî ya Kurdistanê ku hêza leşkerî a Kurdistanê bû,**
**- Damezrandina rêxistinên wek: Yekitiya Jinên Demokrata Kurdistanê û Yekitiya Lawên Demokrata Kurdistanê,**
**- Weşandina rojname, kovar, pirtûkan û herwiha weşanên radyoyî bi zimanê Kurdî,**
**- Hildana alaya sê reng ya Kurdistanê,**
**- Berevaniyeke bi şan û şeref ya çekdarî ji gelê Kurd û kurdistanê ku nêzîk 20 salan dom kir û qasê 5000 şehîd hatin dayîn,**
**- Endametiya di Entirnasyonala Sosyalîst wekî duhemîn rêxistina mezin ya navneteweyî de û hwd … .**

Bê guman dema ku basa wan mîras û rêbazên PDK a Îranê tê kirin, hewce ye bihê gotin ku pêşeng û mêmarên herî mezin yê wan rêbazan, Pêşewa Qazî Mihemed, Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendiyê nemir bûn. Ev Dr. Qasimloyê ku hertim bawerî bi nûjenbûn û nûkirinê hebû û hewl û bizav dikir ku çanda demokrasiyê di nav refên partiyê de cihgir biket û demokrasiyê bikete rêbaza sereke û meşrûiyeta domdar ya PDK a Îranê. Wî nemirî di wê derheqê de digot: **"Em Demokrat in û divêt heta ser demokrat bin, nabe ji bîra me biçe ku eger em gavekê ber bi pêpeskirina demokrasiyê ve biçin, yanî ber bi dîktatoriyê ve çûne! Wê demê vegeryan dijwar e".**

PDK a Îranê li gorî wan perensîbên demokratîk û nûjeniyê kariye berdewam û bi wext kongireyên xwe lidarbixe û di wan kongiran de tevî guhartina siyaset û rêbazên siyasî yên xwe, li gor rewş û kawdanên serdem ku bikare daxwazên gel misoger biket, di eynî dem de di postên deshilatdariya xwe de jî guhartin pêk anîne û berdewam xwe nû kirî ye. Nimûna zindî bo wan guhartinan, Kongira 13'an ya PDK a Îranê bû, ku bê guman dê bandoreke erênî di warên rêxistinî û siyasî ya vê partiyê de hebe û dê bibe egera coş û bizaveke nû li jiyan û xebata PDK Îranê bo pêşve birina doza berheq ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê.

## Fireydûn Cîhanî, Balyozê Komara Îslamiya Îranê li Îraqê, serbest hate berdan



Li gorî daxuyaniya Balyozxaneya hikûmeta Îslamiya Îranê li Bexdayê, Fireydûn Cîhanî sîxurê bi nav Balyozê rejîmê serbest hate berdan. 2 mehan berî niha navhatî ji rêya Bexda – Kerbelayê ji aliyê girûpeke Îslamî ya bi navê El - Şeib El - Islamî hate revandin. Ew bi guneha karên têkderî û rêxistina karê terorîstî li bajarê Necefê hate dizîn.

# Êrîşên terorîstî yên 11'ê Septemberê di sêyemîn salvegera xwe de

**Azad Kurdî**
azadkurdi@hotmail.com

Di roja 11'ê Septembera 3 sal berî niha (2001)'an de, 2 Balafirên Boîng 767, ku ji balafirgeha Navneteweyî ya New Yorkê çûne hewa, lê berevajî armanca xwe berê xwe dane Navenda Bazirganî ya Cîhanî li New Yorkê. Bi derbeke giran her 2 avahiyên ku dirêjbûna wan 405 mêtr bû û nîşana bajêrê New Yorkê bûn agir berdanê û hilveşiyan.

Hêj Emerîka û cîhan di sergêjiya vê teqîna mezin û reş de bûn, ku dengê teqîneke din Emerîka û mirovahî şoke kir. Balafireke din xwe li avahiya Wezareta Parastina Dewletên Yekbûyî yên Emerîkayê xist. Ev 2 bûyerên terorîstî ewe qas giran û dilêş bûn ku mirovahî sergêj û mat kir.

Ev balafirene ji aliyê çend kesên terorîst ve hatne dizîn û revandin, piştre teqiyan. Girûpa Îslamî ya tundrê (El Qaide) wekî encamderê vê bûyerê hate nasandin. Di encama her 2 teqînan de nêzîkî 3000 kes ji xelkî Emerîka jiyana xwe ji dest dan û hejmareke zaf birîndar bûn.

**Guhartina têkiliyên cîhanî û navneteweyî**

Girîngiya derbên wan teqînên terorîstî ewqas balkêş û xwedî bandor bûn ku dunya bi cîhana pêş 11'ê September û cîhana paş 11'ê Septemberê hate dabeşkirin. Rûpeleke nû di warê siyasî û dîroka hemdem ya cîhanê vebû. Bûyera 11'ê Îlonê guhartinên kûr û berfireh nemaze di warê têkiliyên aborî, siyasî û dîplomatîk di radeya cîhanê de pêk anîn. Vê bûyerê cîhan û mirovahî bi demeke nû di sedsala 21'an re rû bi rû kir.

3 salan pêş niha ku bûyera hovane ya 11'ê Îlonê qewimî, **Tenahiya Neteweyî** bû mijara bingehî ya rojeva siyasî ya Emerîka û welatên din yên cîhanê. Di wan herêm û welatên cîhanê



**Teqînên 11'ê Septembera 2001'ê cîhana mirovahiyê hejand**

de ku tenahî û ewlekarî nebû, ew bi xeter û tirseke mezin bo tenahiya neteweyî hate zanîn. Di vê navberê de Rojhilata Navîn kete rojeva siyasî ya welatên cîhanê de bo binbirkirina xîmê terorîzmê û cihgîrkirina tenahiya neteweyî ya dewletên cîhanê bi taybetî welatên aram. Ew jî ji rêya hilveşandina rejîmên dîktator û terorîstperwer, û pêkanîna sîstimeke demokratîk di wan welatan de.

**Destpêbûna şerê dijî terorîzmê**

Piştî bûyera terorîstî ya 11'ê Septemberê xebat dijî terorîzmê bû mijareke cîhanî. Piraniya welatên cîhanê pişikdariya xwe di wê xebatê de dane eyankirin. Beriya 11'ê Îlonê mijara terorîzmê û kiryarên terorîstî yên kes, girûp û dewletên terorîstperwer di nava qazanc û berjewendiyên welatên Rojavayî de winda bû, û kiryarên hov û terorîstî dibûne fidayê alvêra wan welatan. Bo nimûne pêwîst e em îşarê bi terora rêberê mezin yê gelê Kurd û Sekreterê Giştyî yê PDK Îranê Dr. Ebdulrehman Qasimloyê aştîxwaz û hevalên wî (Viyen 1989), û Dr Sadiq Şerefkendî (Berlîn 1992), bikin. Dewleta wê demê ya Urtîşê doza şehîdkirina Dr. Qasimloyê nemir kire goriyê têkiliyên ticarî û bazirganî yên xwe û hikûmeta Îslamî ya Îranê. Lê dadgeheke serbixwe ya Elmanyayê, piştî çend salan şopandina bûyera terora Dr. Şerefkenî û hevalên wî di sala 1997'an, serokên olî yên hikûmeta Îslamî ya Îranê wek berpirsyarê vê terorê nasandin û bikujên wê jî xistne girtîgehê de. Serbarê vê çendê jî, careke din biryarên dadgehê rêve neçûn!

Piştî bûyera 11'ê Îlonê dewletên Ewropayê bi xurtî ketne nava eniya dijî terorê. Bi vê çendê piştgîriyeke xwedîhêz ji Emerîka bo şer dijî teror, trerosît û terorîstperweran hate kirin. Destpêka vî şerî jî êrîş bo ser hikûmeta Taliban û Rêxistina El – Qaide li Efxanistanê û hilveşandina vê hikûmetê û paşan rejîma dîktator û mirovkuj ya Beis li Îraqê bû.

Hikûmeta Îslamî ya **Îranê**, **Sûriye** û **Kureya Bakur** wek 3 welatên **Tewera Têkderiyê** di cîhanê de ji aliyê Emerîka ve hatine naskirin. Piştgirî û piştevanîkirina hikûmeta Îslamî ya Îranê ji hêzên tundrê yên Îslamî û terorîst li seranaserî cîhanê û nemaze di Rojhilata Navîn de xetereke mezin bo ser tenahiya neteweyî ya welatên cîhanê ye. Nabe çi aliyek wê rastiyê ji bîr biket.

Bila rejîmên dijî azadî, demokrasî, mafên mirovan, tenahiya neteweyî, bexteweriya civaka mirovahiyê û hwd … tûşî qedereke wekî hikûmeta Taliban û rejîma Beis ya Sedam Husên bin, û îdê mirovahî li gel bûyerên hov û dilêş yên wekî bûyera terorîstî ya 11'ê Septembera 2001'an berevrû nebe.

Mirin û neman bo terorîst û terorîstperweran.

## Teror û Terorîzm

Peyva terorê di zimanê Firanse de bi wateya tirs û tirsandinêye û di siyasetê de jî bi kiryarên tund û tûjî û naaramiya hikûmetan bo serkûtkirina neyaran û tirsandina wê tê gotin û her wiha bi kiryarên opozîsyonê tê gotin ku bo gihîştin bi armancên xwe yên siyasî, hewara xwe dibene ber kiryarên tund û tûjî û bi xof. Terorîzm rêbaza wan hikûmetane ye ku ji rêya girtin, îşkence, ji nav birin û curên din yên azardana ne qanûnî û ji rêya Polîsê nepenî ve, neyarên xwe serkût dikin û ditirsînin, yan rêbaza girûpên Rast an çep ku bo hilveşandin yan tirsandina dewletê penahê bo kuştin û têkdanê dibin. Şêwaza Anarşîstên şorişvan û herwiha hin taqimên şorişvan yên dinê di Rûsiya serdemê Tizariyan de awayek ji terorîzmê bûye. Îro teror bi wateya kuştara siyasî ye û ew kesê ku vî karî encam didet bi terorîst nav diben.

Di serdemê şorişa Firanse de, ji Maya 1789 heta Juyeya 1794'an bi qonaxa **Hikûmeta Terorê** tê zanîn, çunkî di vê qonaxê de hezaran kes bi Giyotînê hatine kuştin.

Di van çend salên dawî de û bi taybetî piştî serhildana hikûmet û tevgerên Radîkalên Olî, terorîzm bi wan kiryarane jî tê gotin ku ew cure cîhanbîniyane berhem anîne. Piştî bûyera 11'ê Septemberê dijatîkirina terorîzmê bû erkeke cîhanî û eniya dijî terorîzmê ku Emerîka serokatiyê diket pilan bo ji navbirina terorê dane dest pê kirin. Di dirêjiya wê pêvajoyê de şer li Efxanistanê û piştre jî li Îraqê qewimî. Serbarê vê çendê ku armanca Emerîka û hêzên mezin yên din berjewediyên aborî û siyasî ne, dixwazin bo şerkirin li gel terorîstan eniyekê avabikin.

**Jêder: Kovara LAWAN, hejmar 18**

# Dirûşma stratêjîk ya fidralîzmê û çend gotinek

**Siyamend Terbî**
siyamendesileman@yahoo.com

Dirûşma stratêjîk a **Demokrasî bo Îranê û Otonomî bo Kurdistanê** nêzîkî 59 salan dirûşma stratêjîk a PDK Îranê bû û di piraniya belavok û weşanên partiyê de, bi berfirehî li ser naveroka wê dihate nivîsandin. Dirûşma ku bizava rizgarîxwazî a gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi pêşengiya Partiya Demokrat zêdetir ji nîv sedsalê ji boy destveanîna wê xebat kir û di wê rêyê de bi hezaran xortên şorişvan û gernas pêşkêşî baregeha azadiyê kir û bajar û gundên Kurdistanê kavil û wêran bûn û bi hezaran xortên Kurd an hatine koçberkirin, an di hepsan de ketne bin azar û îşkencê û canê xwe ji dest dan.

Otonomî çi bi kakil û çi bi nav, ji hemû Kurdekê re hatibû naskirin û wan dizanî ku di pêxema vê dirûşmê de çi biha û nirxek ji gelê Kurd hatiye standin û herwiha bo destve anîna wê jî çi demekê ji tekoşînê nesekinîne. Lêre da pirsyarek tête holê: Erê gelo eger wisa ye û bo wê dirûşmê bi wî qasî xebat û têkoşîn hate kirin, çima di kongira 13'an a PDK Îranê de hate guhertin û cihê xwe da Fediralîzmê?

Di pêş de hewce ye îşare bi vê çendê bihê kirin ku mafê diyarîkirina qederê bi 3ê awayên cuda cuda tête diyarîkirin. 1- Otonomî 2- Fediralîzim 3- Serxwebûn. Her gel û neteweyek li gor rewşa siyasî a navxweyî, herêmî û navneteweyî, xwastên xwe beyan diket û yek ji van sêyane hildibijêre.

Otonomî çaxekê tê holê ku gel an neteweyek nexwaze ji welatê xwe cuda be, û di çarçoveya wî welatî de bimîne, an zirûf bo xwastina Fediralîzmê di rojevê de amade nebe.

Lê bo welateke wekî Îranê ku çendîn gel tê de dijîn, hilbijartina Otonomiyê bi çi wateyekê bû: Lêre da em dê bersîva vê pirsyarê bi bîranîneke rêberê şehîd Dr. Qasimlo bidin. Dr. Qasimlo di civînekê de ku ji bo Azerî, Kurdan û gelên din yên Îranê pêk hatibû, bo çareserkirina pirsa neteweyî, Fediralîzimê tîne ber basê. Di vê navberê de Azeriyek dibêje: "Çima Dr. Qasimlo bûye nûnerê me! Em bi xwe dikarin daxwaza mafê xwe bikin!" Piştre Dr. Qasimlo bo pirsa Kurd bas ji Otonomiyê diket. Keseke din dibêje: "Çima Dr. Qasimlo daxwaza mafê me naket"? Lêre da ye ku Dr. Qasimlo radigehîne ku ez tenê nûneriya gelê Kurd dikim. Xurt nebûna seha parek ji gelên Îranê û daxwaz nekirina mafên xwe û şovînîzma Îranê bûne hegera evê ku Otonomî wekî dirûşma stratêjîk ya PDK Îranê bo vê qonaxê bihê hilbijartin.

Lewma em dikarin bêjin sîstema Fediralîzimê tişteke nû nine ku taze ji aliyê PDK Îranê ve bo destve anîna mafê neteweyî yê Kurdan li Îranê, hatibe baskirin. Belkî dirûşma pitir ji 30 salaî ye ku ji aliyê PDK Îranê ve ketiye ber basê û hertim ragehandî ye ku baştirîn terz bo çareseriya mafên gelên Îranê û rêvebirina Îranê Fediralîzm e. Gotinên Dr.Qasimloyê zana di sala 1989'an de li Viyena Utrîşê li ser maseya got û bêjê tevî bi nav dîplomat-terorîstên rejîma Komara Îslamî a Îranê baştirîn belge û şahid bo bawerîhebûna PDK Îranê bi Fediralîzmê ne ku dibêje: *"Hekî rejîma Komara Îslamî a Îranê nekare mafê gelên Belûç, Azerî, Ereb û … çareser biket, dê tevî qeyranê berengar be".* Rêberê şehîd Dr. Sadiq Şerefkendî jî di vê derheqê de li rojnameya Fidayî a Cozerdana 1371'ê (1992) de dibêje: *"Bi hizr û raya me, gereke bo her yêk ji neteweyan li Îraneke Demokrat de mafeke nemaze bihê berçavgirtin ku rêya çareseriyeke giştî bo Îranê be, ev jî Fediralîzm e".*

Lewma dirûşma Demokrasî bo Îranê û Otonomî bo Kurdistanê bi hilkevt nehatibû pejirandin û ev dirûşme piştî berhevdaneke zaf pejirandin ku hewcehiya rewşa wê qonaxa xebatê di Kurdistana Îranê de bi li berçavgirtina şovînîzma Îranê û xurt nebûna xebata neteweyî a gelên Irene, bûne hegera pejirandina vê dirûşmê ji aliyê PDK Îrêne ve.

Yek ji biryarên here girîng yên kongireya 13'an ya PDK Îrenê, guherîna dirûşma Demokrasî bo Îranê û Otonomî bo Kurdistanê bû ku dirûşma ***destve anîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îraneke Demokratîk ya Fediralî de*** danîne ciyê wê de.

Li ser Fediralîzmê çend dîtin û nêrîn hene: "Dîlman Mihemed Sebrî dibêje: Yeketiyeke Fediral e ku ji encama hiloşîna dewletekê yan hevgirtina çend dewletên serbixwe pêk têt, her yek ji endamên nav yekitiyê dibine qewareyeke destûrî û siyasî a serbixwe. Zêdebarê vane hemûyan jî girêdayî bi destûra Fediralîzmê em dikarin bêjin ji sîstimeke destûrî û siyasî ya tevlîhev çê bûye".

Dr. Mihemed Mewlûd jî dibêje: "Rêxistineke siyasî û destûrî a hundirî a tevlîhev e û tê de çend dewletên endam an çend wilayetek li ser hikûmeta hevgirtî rê dikevin".

Mersîl Birîlo dibêje: "Hevgirtina çend dewletan e ku heta qasekê milxwarê deshilata navendî dibin. Li hemen terzî de parêzvaniyê ji serbixwebûna zatî, destûrî kargêrî û dadweriya xwe dikin".

Evro sîstema Fediralîzmê bo rêvebirina welatên ku ji çend gel û neteweyan pêk hatiye, sîstemeke serkevtî ye. Em dikarin bêjin Fediralîzim sîstemeke dilxwaz û azad e ku gelên her welatekî bi sehkirin bi vêc û qazancên hevpişk pêk tînin û di rêvebirina welat de bi awayeke fermî pişikdar in, û bo pêşvebirina welatê xwe cehdê dikin. Heta pareke berçav ji welatên cîhanê, ewên ku xwediyê axeke pan û nifûseke zaf in, tevî evê da jî ku çend neteweyên cuda tê de najîn, bo baştir rêvebirina welat û pêragehiştina hêsantir û rêk û pêktir û parvekirina destûrê bi ser çend deshilatên herêmî de, ji sîstema Fediralîzma îdarî mifahê werdigirin. Welatên wek Amerîka, Swîs, Elmanya, Hindostan, Ustiraliya û … nimûneyên wan welatan in, ku bi sîstema Fediralîzmê têne îdarekirin.

Aliyê navxweyî: Di heyamê navbera kongireya 12 û 13'an a PDK Îranê de hindek guhartinên kûr û bingehîn di Îran û cîhanê de pêk hatin: Li hundira welat piştî heyameke dûr û dirêj ji tepeserî û dîktatoriya rejîma Komara Îslamî a Îranê û çewsandin û tepeserkirina hemû maf û azadiyekê seha neteweyî ya gelên din yên Îranê xurt bûye û ev gelane hatine ser vê bawerê ku dibe bibne xwediyê maf û azadiyên wekhev, û di rêvebirina welat da jî wekhev pişikdar bin û heyiya welat bi awayekî adilane di navbera gelên Îranê de bihê parvekirin, her wisan bas ji guherîna qonaxa bingehîn dikin û Wilayeta Motleqe ya Feqîh dêxene jêr pirsyarê.

Aliyê derveyî: Paş êrîşa 11'ê Septembrê û pêkhatina eniya dijî terorê li cîhanê û hatina Amerîka û hêzên hevalbend bo herêmê û hiloşîna du rejîmên piştevanê terorîzmê û nêzîkbûna dawîhatina temenê rejîmên dîktator, mil dane milê hev (hundirî û derveyî) û hewceyiya evê pêk anîn ku di vê qonaxa xebat û tekoşînê de, Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê dirûşma Federalîzmê di kongireya sêzdehem ya xwe de bipejirîne.

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**Pişka 8**

**Kurmanc Hakkî**
hejar@yahoo.com

**Giriftên teoriyên deshilata gel**

Me di du gotarên berê de derbarê basa teoriyên pêwendîdar bi demokrasiyê û xwasta gel axivî. Di vê beşê de bi kurtî em dê ser mijara giriftên teoriyên deshilata gel biaxivin:

Li teoriya hilbijartinên civakî bi awayeke berfireh ser terzên biryardana kollektîv tê bas kirin. Lê di teoriya hilbijartinên civakî de gelek girift hatine berçav girtin. Ji aliyeke din ve encamên teoriyê gelek berçav in eger bêt hilbijartin di demokrasiyekê de bê encamdan ku mirovan mafê dengdanê bi hilbijartiyê xwe yan dilxwazê xwe bidet.

Di hilbijartina civakî de perfrensên (dilxwazên) kitekesan bi awayeke kollektîv dikin biryara havbeş. Di biryardana civakî de lîsteya wan babet an mijarên bo hilbijartinê tên pêşkêş kirin. Yanî di şûna lîsteya kesan an kitekesan, ev babet û mijarên ber basê dikevin lîsteya hilbijartinê. Bi vî awayî mirov dikaribe dengên xwe bidete wê altirnatîva ku dilxwazê wî ye. Dilxwazên hatî hilbijartî dikaribin perfrensa bihêz bît an bi awayeke berhevkirî hatibe hilbijartin, bi wê wateyê ku eger bo nimûne ew basên lîsteyên hilbijartinê bi tewawî bi dilê kesekê nebin, lê dema hilbijartinê lîsteya bo nimûne A ji lîsteya B bêtir bersîva daxwaza dengder dide . A bi vî awayî dibe hilbijardeya (nisbî). Û eger dengder B hilbijêre, B vê bibe hilbijartiya nisbî yê dengder.

Di hilbijardinên civakî da kitekes dê bikaribe altirnatîvên xwe bi dilxwazên reha (mutleq) û transitive wate bi awayeke nisbî ji altirnatîveke dîke baştir e. Mebest ji altirnatîva reha ewa ku hemû ev xwastikên mirov di lîsteya hilbijartinê de li hev hatibin. Dilxwaza transitive bi vî awayî ye ku bo nimûne: Eger altirnatîva A ji altirnatîva B lawaztir be û B ji altirnatîva C lawaztir, A zeîftir yan biçûktir ji C yê. Transitiv bi wateya rêz kirina altirnatîva li gor giringî û giraniya wana tê. Giraniyên han li ser bingehên rasyonal an mentiqa hejmêrî tê danîn.

Hewceyî bîranînê ye ku di teoriya hilbijartinên civakî de babet dikevin ber lîsteya hilbijartinê. Ji bona beşdariya şarowendan li biryarên siyasî yên welat. Li gor vê teoriyê bi kar anîna lîsteya babetan dê bibe hegera beşdariya zortir ya wana di pêşveçûna pirsgirêkên welat de.

Di vê beşê de em dê bi kurtî ser mijara giriftên hilbijartina civakî rawestin: Di pêşê de em mêzeyî wan rewşana bikin, ew rewşa ku di hilbijartinê de zêdeyî 2 altirnatîvan hene. Di şûnde em dê ser wê rewşê rawestin ku hilbijartinên cur be cur li gor perfrensên cuda cuda encamên cuda didin. Li pişka sêhem em dê basa hegera stiratêjiya gize kirinê (manipulation) (teqelub) bikin. Piştî bas kirin li ser basên taqane li mesela hilbijartinê em dê basa lîsteya basên hevbeş bikin. Di dawiyê de em dê ser biryara li ser bingeha piranî li demokrasiyên *muşariketî* rawestin.

**Hilbijartin li altirnatîvên zêdeyî duyan**

Li gor lêkolînên zanayên vê warê, dema hejmara altirnatîvan zêdeyî 2'yan be, vê demê îmkana vê ku hilbijartî dilxwazê piraniya dengderan be gelek kêm e. Bo vê yekê em dikaribin mînaka jêr bînin ber bas:




**Wêneya 1. Xala îdeal ya hilbijardeya havpişk**

Dengderê 1: X > Y > Z (Yanî X baştir e ji Y û Y jî baştir e ji Z )
Dengderê 2: Y > Z > X
Dengderê 3: Z > X > Y

Li hemberî X û Y de: 2 kes X ji Y baştir dibînin.
Li hemberî Y û Z de: 2 kes Y ji Z baştir dibînin.
Li hemberî X û Z de: 2 kes Z baştir ji X dibînin.

Li gor vê hemberiyê çi yek ji altirnatîvên X, Y, Z nikaribin dengê piraniyê destve bînin. Bi vî awayî ewana nikaribin piraniyeke rasional pêk bînin. Û em nikaribin çi yek ji van altirnatîvan hilbijêr in, eger bêt û armanca me biryardan li ser dengê piraniyan be. Encama han bo alîgirên xwasta gel, gelek giring e, ji ber ku li gor teoriya wana belkî xwasta piranî hergav neyê diyarî kirin.

Profîla hilbijardeya dilxwaz dikaribin bikin yek ji altirnatîvên hilbijardinê. Bi wê wateyê ku hilbijardeya hemû endamên civakê di çarçoveya dirûşm an babeteke siyasî de bê li hev kirin. Bi vî awayî her dengderekê xaleke îdeal heye, ku nûneriya daxwaza şarovend dike di nav hemû altirnatîvên din de. Di vê rewşê de çiqas mirov ji xala îdeal dûr bikeve, hevdîtin û havbeşiya siyasî ya wana ji hev dûrtir dikeve. Wêneya hejmara 1. hevbeşiya siyasî di nava civakê de li ser rewşên cur bi cur nîşan dide û wêneya hejmara 2. nîşana hevcudahiya endamên civakê li dirûşmên havbeş e. Di vê wêneyê de 3 pirsên aborî (wek behregirtin ji nift, gaz û kehreba ji bo germiya xaniyan hatiye berhevdan):

Eger bêt û xala îdeale hilbijartinê bibe, bi vî awayî piraniya dengderan biriye û ewa jî bi wateya îdeala navî tê. Em wilo berçav bigirin ku hejmara ew kesên dengan didin ket e û hemû dengder li gor wêneya 1. piştgiriyê ji yek siyasetvanî/ê dikin. Di wê rewşê de ew kesê ku ji aliyê çep yan rast ya bazneya wêneya yek ketiye, ewa dengderê navîn tê naskirin. Ew kesên ku alîgirê wê pişkê bûne di rastî de ji hemû kesê zêdetir mifah ji encama dengan wergirtine.

Di wêneya 1. de alîgirê Gazê piraniya dengan dibe û dengê navîn e.




**Wêneya 2. Nebûna xala îdeal yan lîsta havpişk**

Lê di wêneya 2 de çi kesek piraniyê bidest naîne.

Yek ji hegerên hilbijartina îdeal ku di nava altirnatîvên wêneyan de îşare pê hatiye kirin, ewa ku çawa taqekes di hilbijartina xwe de wê yekê berçav bigirin, kîjan ji wan altirnatîvan li gor geşe kirina aboriya îro pêşve diçin.

Yek ji hegerên dengên havpişk yan îdeal ya hilbijartinê dijheviya dîtinê yan dijheviya havpişk di siyaseta enirjiyê de ye. Bo nimûne di wêneya 1 de em dikaribin bêjin ku di helbijardina şêweya bikaranîna enerjiyê de dengder di navbera hevberiya ekologiyê (alîgirî ji sersewziya jîngehê) û enerjiyê de hilbijartina xwe li gor nirxên hevpişk yên du aliyan dikin. Lê di wêneya 2 de helbijartin li ser çi bingehan nagehe encamên havpişk.

Em di pişka dahatî de zêdetir ser wê mijarê rawestin.

# Armanca Komara Îslamî ji şerê 8 sale tevî Îraqê çi bû

**Dara Natiq**
dara_enzeli@yahoo.com

Şerê Îran û Îraqê ku di dawiya heyva Xermanana sala 1359'an de dest pê kir û heşt salan (1359-1367'ê Rojî) dirêjî hebû, bi yek ji mezintirîn bûyerên sedsala bîstan tê hesibandin. Ev şere piştî şerê duyem yê cîhanî, yek ji şerên herî kavilker, bixwîn û dirêj yê kilasîkî bû.

Piştî hiloşîna rêjîma Şah û destvegirtina deshilatê ji aliyê Xumênî ve (1357'ê), dewleta Îraqê li Xakelêweya sala 1358'ê Rojî bi belavkirina çend daxuyaniyan, piştevaniya xwe ji rejîma taze ya Îranê da eyanê. Lê Xumênî berevajî vê helwêsta dewleta Îraqê, daxwaz ji xelkê Îraqê kir ku rêjîma Îraqê hiloşînin. Li dîv wan axavtinên Xumênî de bû ku di navbera parêzvanên tixûbên her du welatan de pevçûn çêbû.

Di Xermanana sala 1359'ê de dewleta Îraqê rêkevtinnama Elcezayêrê ya ku di navbera her du welatan de hatibû îmzakirin, hilveşand û piştî vê helwêsta dewleta Îraqê, rejîma Xumênî daxwaz ji hemû xelkê Îranê kir ku bi dijî dewleta Îraqê bibine Besîc, eva bû ku di 31'ê Xermanana sala 1359'an de êrîşa berfireh ya dewleta Îraqê bo ser herêmên başûra rojavaya Îranê, bi taybet bo ser balafirgehên girîng yên Îranê dest pê kir.

Her çend Saziya Netewên Hevgirtî, dewleta Îraqê bi vê yekê sûçdar kir ku agirê vî şerî xweş kirine, lê di rastî de, Komara Îslamî a Îranê li jêr navê siyaseta hinartina şorişê bo derve û zorxwaziya xwe, bi taybet li ser xwasta Xumênî bi merema tolvekirin ji hikûmeta Îraqê peşqelê vî şerê malwêranker xweştir kirin.

Rejîma Komara Îslamî ya Îranê ku vêc û berjewendiya xwe û hêviya gehîştin bi armancên xwe di dirêjîdana bi vî şerî de didîtin, û her wisan bi hêviya zindîkirina Împiratoriya Îslamî bûn, berdewam, dihola vî şerî dikutan.

Refsencanî ku ji aliyê Xumênî ve deshilateke zaf pê hatibû dan, di refa herî pêş ya wan kesane da bû ku berdewam li ser dirêjîdana bi şer û avakirina Komareke Îslamî wekî Îranê di Bexdayê de Xumênî handidan. Dema Axundan siyaseteke hankî girtne pêş, zerer û ziyaneke zaf ya madî û meinewî gehîşte welatê me.

Di rastî de ev şere, şerekî bêwate û bêsûd bû, ne şerek bû ku bi mebesta rizgarkirina gelekî dihate kirin, û ne jî şerek bû ku sexmeratî berevanîkirin ji nîştimanê pêk hatibû. Ev şere dirêjîdana siyaseta kevneperwerane û mezinxwazane ya Komara Îslamî bû ku rejîma Axundî 3 mebestên sereke di dirêjîdana bi vî şerî de hebûn: 1- Axundên şevperest dixwastin ji rêya şer ve tevgera Îslamî yan di rastî de felsefeya Wilayeta Feqîh ya xwe bişînne welatên din. Ewan jêve bû ku hekî di destpêka Îslamê de bi zora şûran xelkê zaf welatan bûne mosilman, yê bikarin bi zora topizan Îslama Xumênî bi ser gelên din de bisepînin. 2- Bi dirêjîdana vî şerî dixwastin zaf asteng û girêpêçkên neçareserkirî yên welat wekî, qeyrana abûrî, civakî, çandî û her wisan netebahiyên hindurî ên rejîmê veşêrin û pişt guhê xwe bêxin. 3- Şer alavek bû bo parastina deshilata



**Xumêynî û serokên olî yên hikûmeta Îslamî di destpêkirina şerê Îran û Îraqê de roleke bingehîn hebûn**

Axundan, her Opozisyoneke siyasî bi hêceta vê hindê ku eva şer e û "Wehdet kelîme" hewce ye û çaxê daxwazkirina xwastikên siyasî, civakî û abûrî nine, dihatine qirkirin. Bi vê meremê bersîva her bizaveke civatên xelkê dijî serberedayiya rejîmê, bi agir û asin dihate dan.(1)

Di rastî de ev şere bi ser xelkê Îranê de hatibû sepandin û xelkê welatê me ne tenê çi cure rolek di teysandin, dirêjîdan û bidawîanîna vî şerî de çinebûn, belkû di hemû waran de, ji hêz û karîna wan mifaha xirab dihate wergirtin û ew bûne şevata vî şerî.

Ew şere bû sebebê malwêrankirina zaf ji gund û bajaran. Tenê di Îranê de zêdetir ji 1 milyon kes hatne kuştin û birîndarkirin, û 3 milyon kes jî mişextî bûn, zêdetir ji 200 mîlyar Dolarî xesaret gihîşte welatê me, sedan hezar malbat bê serperest man û zor malbat jî bi giştî ji hev belav bûn, xelkê welatê me tûşî gelek nexweşiyên civakî bûn ku bandorên wê hetanî niha jî di welatê me de didome. Di heyamê vî şerî de qata hejar û kêmdahat ku rejîmê bi direw kevirê wan li sîngê xwe dida, tûşî zaf zerer û ziyanan bû. Xortên welatê me ku qata fidakar û xwedî çeleng ya civaka me bûn, bi guletopan hatne ker ker kirin, û bûne goriyê armanc û zorxwaziya deshilatdarên rejîmê. Serbarê evane jî rejîmê li jêr navê şer de, netewe û kêmaniyên Olî tepeser dikirin û di vê pêwendiyê de jî zaf cinayetên hovane di hindur û bi taybet di Kurdistanê de encam dan. (2)

Rejîmê ji vê derfetê mifah wergirt û gund û bajarên Kurdistanê êxistne ber êrîşa hovane ya xwe û çi ciheke Kurdistanê nemabû ku cinayetan tê de neket. Lewma Kurdistan mîna padiganeke mezin ya leşkerî lê hatibû. Rejîmê bi hêceta şer ew kesên ku dijî dirêjîdana şer bûn û her wisan kesên azadîxwaz bi tundî tepeser dikirin û hêzên opozîsyonê bi hêceta dijatîkirina tevî Îslamê, bi "Mofsidû Filerz" û… sûçbar dikirin, û bi tundî berengarî wan dibû.

Şerê Îran û Îraqê ji aliyê welatên Rojava ve girîngiyeke taybetî hebû, çûnkû zêdetir ji niviya çavkaniyên nefta cîhanê di axa Îran, Îraq û welatên biçûk yên Başûra Girava Fars de bûn. Vî şerî bandora xwe li ser hemû wan welatane habû, û serkevtina her yek ji van aliyane di vî şerî de, dikarî bibe gefek bo ser Rojava, û nehêle li 10 salên dawî de bi hêsanî destê wan bigihîje çavkaniyên neftê yên wan deverane. Her wisan şerê Îran û Îraqê valahiya di navbera civaka xelkê û deshilatxwazên welatên Îslamî de zêdetir kir. Girûpên tundrê yên olî li jêr bandora Komara Îslamî ya Îranê û bi hêviya serhildana şorişê di welatên xwe de, geşe bi tudrewiya olî didan, bi terzekê ku kuştina ew kesên ku tevî wan hevhizir nebûn roj bi rojê zêdetir dibû. Şîîgerî di welatên Behrêyn, Lubnan, Erebistana Siûdî û Yemenê de roj bi rojê geşetir dibû.

Di encam de şerê Îran û Îraqê piştî heşt sal malwêranî û mirovkujî bi vexwarina cama jehrê ji aliyê Xumênî ve bi dawî hat, lê bê şik encamên tijî zerer û tirajîdiya vê bûyerê bi dehan salên din jî li ser jiyana aborî, siyasî û civakî ya xelkê welatê me yê her xuya be.

(1) Rapora Komîteya Navendî ya PKD Îranê bo Kongireya 8
(2) Rojnameya KURDISTAN hejmar 293

# Peyamên Rêxistin û kesayetiyên cîhanî, Îranî û Kurdistanî bo Kongireya 13'an ya PDK Îranê

***Ji bo Kongreya 13'an a PDK a Îranê ji aliyê gelek ji Rêxistin, Partî û kesayetiyên cîhanî, Îran û Kurdistanê ve peyam (mesaj)ên pîrozbahiyên giring û balkêş hatine şandin. Ji ber zafbûna naveroka wan peyaman me nekarî ku wan di rûpelên Rojnameya Agirî de cih bikin. Ji ber vê çendê me bi pêwîst zanî ku tenê navê wan Partî, Rêxistin û kesayetiyên cîhanî, Îranî û Kurdistanî lêre da bêxine ber çavê we xwendevaên hêja û qedirgiran.***

## Peyamên Partiyên biyanî

- Loyîs Eyala, Sekreterê Giştî yê Entirnasyonala Sosyalîst
- Partiya Sosyalîst ya Firanse
- Partiya Entirnasyonala Sosyalîst – Jinan
- Partiya Sosyal Demokratên Emerîka
- Partiya Demokrat ya nû a Kanadayê
- Partiya Keskên Otrîşê
- Partiya Azad ya Ingilistanê
- Partiya Komonîst ya Firanse
- Partiya Sosyal Demokrat ya Elmanya (SPD)
- Partiya Sosyal Demokrat ya Finlandê
- Partiya Sosyal Demokrat ya Otrîşê
- Partiya Kar ya Ustiraliya
- Partiya Lîbiral ya Gel a Swêdê
- Partiya Sosyalîst ya kedkarên Ispanya
- Partiya Sosyalîst ya gel a Danmarkê
- Komeleya Hind û Norwêjî bo kar û barên zanyarî û çandî
- Partiya çep ya hevgirtî a Ispanya

## Peyamên kesayetiyên biyanî

- Xatûna Danyal Mîtran, Serokê Saziya Firans Lîbirate, Parîs
- Kirîs Koçêra, rojnamevan, nivîskar û Kurdnasê Franseyî
- Xatûna Nesrîn Qasimlo, hevjîna rêberê şehîd Dr. Qasimlo
- Dr. Mêrîla Galêtî (Bolon)
- Cêmî Korbîn
- Lord Êrîkna Êvêbrî, endamê Konseya Bilind ya Ingilistanê û serokê girûpa mafê Mirovan di meclîsê de
- Navlîn Ros, Sekreterê Giştî yê Eniya Çep ya Finlandê, Hilsînkî
- Maryon Zîlîg, cihgirê szerokê Firaksiyona Partiya Sosyalîzma Demokratîk ya Elmanya di Parlemana Berlînê de
- Profesor Albêrt Kopêxnî, Berpirsyarê Sekretariyeta navneteweyî ya Partiya Sosyal Demokrat ya Otrîşê
- Roydîgêr Loybêtsir, endamê rêveber yê Komeleya Dostiya Kurd û Elmanî li Berlînê
- Engilêlîka Bêd, Serokê Partiya Kesk ya Elmanya
- Rûp Rêşt Polêns
- Xatûna Maydrûna Mêrk, endamê Parlemana Nîdirzaks ya Elamnaya û Wezîrê berê yê Karê Ewropa li hikûmeta Federalî ya wê herêmê
- Pîtêr Kûk, Sekreterê Navneteweyî yê Partiya Kar a Ustraliya
- Milin Nîlir Sibêdk, Serokê Rêxistina Norwêjî ya berevanî ji mafê gelê Kurd
- Kirîs Hana, endamê Parlemana Başûra Ustraliya
- Hogo Vana Rumpanî, Sinatorê îftixarî li Biljîkê
- Bêrnard Doran, Balyozê Firanse û Serokê Saziya dostiya Firase û zimanên cîhanê
- Lars Olî û Ola Hofman, Sekreterê partiya Çep û Cihgirê yekem yê Sekretêr
- Konî Firêkrîkson, Sekreterê Demî yê navneteweyî yê Partiya Sosyal Demokrat ya Swêdê
- Larş Şernikoyst, Sekreterê Partiya Sosyal Demokrat ya Swêdê
- Orban şvantson, Sekreterê Partiya Demokrat Mesîhî ya Swêdê
- Lars Kiramêr Mîilsên, Endamê Parlemana danmarkê û Serokê Konseya Danmarkê – Kurdî bo mafê mirovan
- Bênt Kirîstênsên, xizînedarê wê Konseyê Kopimag
Alêksa Makdonof, Berpirsyarê karê derve yê Partiya Demokratîk ya nû a Kanada û berendamê wê Partiyê ji Hayngistin
- Dr. Pîtêr Pîltês, ji rêber û endamên Riraksyona Partiya Kesk ya Ortîşê, Viyen
- Bob Spîng, endamê Parlemana Ingilistanê ji Partiyas Parêzvan
- Bord Kêtîl û Nihawg, Mamosta û nivîskar

## Peyamên Partiyên Îranî

- Yekîtiya Eşîretên Başûr
- Eniya Hevgirtî ya Belûçistana Îranê
- Eniya Demokratîk ya gel a neteweya Erebên Ehwazê
- Kanûna çandî – siyasî ya gelê Turkman
- Rêxistina Fîdayiyên Gelê Îranê (Piranî)
- Komeleya berevanîkirin ji mafê Mirovan di Îranê de
- Yekîtiya Komarîxwazên Îranê
- Rêxistina Yekîtiya Fîðayiyên Gelê Îranê
- Partiya Miletê Îranê (Tehran)
- Komîteya Rêxistinî ya Şêwra demî a Çepên Sosyalîst yên Îranê

## Peyamên kesayetiyên Îranî

- Dr. Elîriza Nûrîzade, siyasetvan û rojnamevanê navdar yê Îranî
- Birêz Ebulhesen Benîsedr, siyasetvan û yekem Serok Komarê Hikûmeta Îslamî ya Îranê
- Birêz Ziya Sedr
- Birêz Kambîz Rosta
- Birêz Hejîr Teymûriyan
- Birêz Mihemed Baqir Muiminî
- Birêz Mêhdî Xanbaba Têhranî, kesayetiyê siyasî yê Îranî û dostê dêrîn yê PDK a Îranê

## Peyamên Partiyên Kurdistanî

- Pertiya Demokrat ya Kurdistanê
- Yêkgirtûya Îslamî ya Kurdistanê
- Yekîtiya Şorişvanên Gelê Kurdistanê
- Partiya Zehmetkêşên Kurdistanê
- Partiya Sosyalîst ya Kurdistanê
- Partiya Rizgariya Kurdistanê
- Yeketiya Neteweyî ya Demokrat a Kurdistanê
- Kongira Nîştimanî a Kurdistanê
- Yekîtiya Jinên Demokrat ya Kurdistan a Îranê
- Fedirasiyona Civaka Kurdistaniyan li Swêdê
- Partiya Kar ya Demokrat a Kurdistanê
- Tevgera Demokrat ya Gelê Kurdistanê
- Navenda lêkolîna Kurd li Bon ya Elmanyayê
- Peyama Komîteyên Partiyê li derveyî welêt (Komîteya PDK a Îranê li Norwêjê, Komîteya PDK a Îranê li herêma Lîlêstirom ya Norwêjê)
- Peyama Navenda lêkolîna Kurd "Metîn Tînceso"
- Peyama Civata "Yarsan"
- Peyama Arîkariya Partiyên Kurdistanî yên Birîtaniya û Londonê
- Peyama Civata Navendî ya Tevgera Neteweyî a Kurdistanê
- Civata neteweyî a Kurd
- Enstîtûya Kurd li Broksêlê
- Penaberên ser bi PDK a Îranê li Turkiyê
- Şêwra Penaberên Îranî
- Peyama komek ji pîrozbahiya endam û tagirên partiyê li bajarê Mihabadê
- Partiya Demokrat ya Kurdistanê (Bakur)

## Kesatiyên Kurdistanî

- Birêz Ezîz Mihemed
- Birêz Hesen Şîweselî
- Birêz Mesûd Tek, Sekreterê Giştî yê Partiya Sosyalîs ya Kurdistanê
- Birêz Ebdulah Muhetedî,
- Dr. Wirya Rewandizî
- Golmorad Moradî
- Birêz Şahîn Bekir Sorekî li Ustraliya
- Dr. Hesen Şetewî
- Ronakbîrên Kurd li bajarê Bokanê (Kurdistana Îranê)

Di hevpeyvîneke de bi televizyona FOX derheq bernameyên etonmî yên hikûmeta Îslamî ya Îranê, Boş, Serok Komarê Emerîka got:

# Emerîka nahêle ku Îran bibe xwediyê çekên etomî

Serok Komarê Emerîka Corc W Boş, di hevpeyvîneke de bi televizyona FOX derheq bernameyên etonmî yên hikûmeta Îslamî ya Îranê da xuya kirin ku Emerîka bo eşkere kirina armancên Îranê bidestxistina çekên etomî ji her îmkanekê mifahê werdigire. Wî got ku Emerîka nahêle ku Îran bibe xwediyê çekên etomî.

Boş da zanîn ku Îran xwediyê çavkaniyên dewlemend yên neft û gazê ye û çi pêdiviyek bi enerjiya etomî nine, li ser vê çendê hewl û xebatên Îranê bo bidestxistina çekên etomî tenê armanca leşkerî heye û dewleta Îranê wê dozê didomîne.

Herwiah Sero Komarê Emerîk di bersîva pirsekê de ku gelo Emerîka izna çêkirina çekên etodî dê bide Îranê, yan na? Got:" Na, me bi aşkira ji rayedarên Îranê re gotiye û helwêsta me jî di vî warî de kifş û eyan e. Îran çi demekê nabe xwediyê çekên etomî". Boş berdewam kir û got ku emê di destpêkê




de, ji têkiliyên dîplomatîk bo givaş û zextên navneteweyî bo ser hikûmeta Îslamî ya Îranê mifahê werbigirin, îmkanên din jî vekirî ne û helbet di her rewşekê de.

# Emerîka û Kanada, zortirîn bijarteyên Îranî bo aliyên xwe kişandine



Dana îmkanatên lêkolîn û rihetiyê bi xwedî ramanan, giringtirîn sedema kişandina bijarteyên Îranê ne ku, di vê derheqê de Emerîka û Kanada pileya yekem û duhem in.

Lêkolîna vekolînvaneke Îranê ku di zanîngeha MIT ya Emerîka dersê dibêje, nîşan dide ku pitir ji 45 ji sedê ya Îraniyên rûniştî li welatê Emerîkayê xwediyê medreka pisporî û pisporiya bilind in.

Lêkolîneke din ku di asta zanîngehên girîng yên Îranê de hatine encamdan, nîşan dane ku bi kêmî ji her 18 kesên ku ji aliyê zanîngehê ve bo wergirtina pisporiyê bo welatên pêşverû hatine şandin, tenê 3 kes vegeriyane Îranê.

Dr. Emanulah Qerabî Meqdem, civaknas û mamostayê zanîngehê der barê encama lêkolînên ku derheq nirxandina hilatina mejiyan encam daye, dibêje: Bandora erênî ya asta xwendina dayik û baban 88 ji sedê, razîbûna dayik û baban 92 ji sedê û asta çandî ya dayik û baban jî 92 ji sedê di hilatina mejiyên ciwanan de teisîr heye.

Ev Mamostaye derheq nirxandina pêwendiya di navbera qasê aboriya malbatan û hilatina mejiyan de, dibêje: 79/5 ji sedê bawer in ku asta bilind ya aborî, 60 ji sedê kêmasiyên îmkanatên rihetiyê û 70/5 ji sedê jî nebûna pêşketina civakî di warê malî de û nebûna kar di Îranê de sedema hilatina mejiyan dizanin.

Herwiha 92/5 ji sedê gotine ku îmkana karê baş di welatên pêşverû de bandor heye û 96/5 ji sedê jî hebûna vê îmkanê di welatên din de ji sedemên bandordar zanîne.

**Jêder: ISNA**

# Li Pakdeştê 28 zarok hatin kuştin

Roj nine ku em şahidê qewimîna kuştin û awayên cur bi cur yên cinayetan di Îranê de nebin. Di vê mehê de nûçeyeke balkêş di medyayên hikûmeta Îslamî ya Irene de, hemû kesek nerehet û xembar kir. 28 zarok bi destê 2 ciwanan (Elî û Mihemed), li bajarê Pakdeştê hatine kuştin. Temenê zarokên ku hatine kuştin, di navbera 8 heta 12 salan de bûye. Heta niha meytê 22 kes ji wan zarokane hatiye peydakirin.



**Her 2 sûçdarên wê cinayetê (Mihemed û Elî)**

Vî nûçeyî bala hemû kesekê bo aliyê xwe rakişand. Wijdana mirovan bi encamdana vê cinayetê careke din hejiya. Mihemed Bîce gunehbarê eslî, bi kuştina zarokên bêguneh îtirafê dike û dibêje ku merema min ji van cinayetane sernekevtina min di zewcînê de bû. Ew dibêje: Dema ku min bi keçekê re hez kir û lê malbata wê bersîva nerênî da min , dilê min xwest ku ji hemû kesekê întiqamê bigirim.



**Cihê ku wan zarok li wir kuştine**

Bajarê Pakdeştê nêzîkî Tehrana paytext e. Nifûsa vî bajarî niha derdora 330000 kesî ye. Piraniya rûniştiyên vî bajarî jî mişextiyên bajarên dinê ne. 80 000 kes ji wan penaberên Efxanî ne. Xelkê vî bajarê biçûk bi zimanên Kurdî, Turkî, Lorî, Farsî û Efxanî diaxivin. Qasî 54 kûreyên çêkirina kerpîçan li derdorên bajarê Pakdeştê hene ku rewşa demografîk ya vî bajarî bo afirandina cinayetan rihettir kiriye.

***Jêder: BBC***

# An teslîm bûn li hemberî xwastên mêran, an jî xwekuştin

**Meryem Hacîpûr**

Yek ji arîşeyên civakî ku civaka mirovahiyê di dîroka xwe de tevî wê berengar bûye, û niha jî em şahidê xurtbûn û teşenekirina roj bi roj zêdetir a wê bi taybet di kurdistanê de dibin, xwekuştina Jinan e. Kurdistan bi giştî û Kurdistana Îranê bi taybetî herêmek e ku berdewam ev bûyere bi qaseke zor têde diqewime. Li gor serhijmêriyan, Îran di warê xwekuştinê de piştî Kulumbiya û Hindostanê sêyem welat di cîhanê de ye û bajarên Kurd akincî wekî Kirmaşan, Îlam û Sine zortirîn amara xwekuştinê nîşan didin.

Diyardeya xwekuştina jinan, mijareke pir xof, bi kovan û keser e ku îro rastiya êş û azara tijî meyneta jinan di civaka Kurdistanê de dixe berçav, rastiyek ku jin ji bo xwe rizgarkirin ji wê penayê bo xwekuştinê dibin. Heta ku dawî bi xem û kovanên wan yên di jiyanê de bêt û ji wan sonet û tîtalên kevn û rizî ku rojane tevî berengar dibin, rizgar bibin. Jina Kurd di civakeke "Mêrsalarî" de, bi miroveke pile 2 tê mêzekirin û neçar bi tabkirina rewişt û tîtalên kevn û kevneşopî û mêrsalarî bûye û ji maf xwe yê herî destpêkî ku hilbijartina hevjîn, û hat û çûnê û … hatiye bêpar kirin. Lewma zext û givaşeke zêdetir dikeve ser jinan û zûtir dikevne ber êrîşa pirisgirêk û zirarên ruhî û rewanî.

**Xwekujî çiye?**

Bi her terzê kiryareke serkevtî an sernekevtî tê gotin ku mirov bo li dest dana canê xwe an dawî anîn bi jiyana xwe encam didet.

Êmêl Dorkhaym di pênaseya xwekuştinê de dibêje: "Her terzê mirin an nemanek ku berhema rasterast an nerasterast ya kiryarên erênî û nerênî yên kesê gorî ye ku li encama karê xwe agehdar bûye û zaniye ku dê bi vê encamê bigihîje".

Curên xwekuştinê zor in, wek: Xwe xendiqandin, dermanxwarin, xwe avêtin ji bilindahiyan, gule ji xwe dan, xwe şevitandin û hwd … .

Tê zanîn ku di nava hemû curên xwekuştinê de xweşevitandin rêjeyekî herî zaf heye ku ji wê qasê jî, 80 ji sedê jin pêk tînin û piraniya wan di navbera jiyê 15 hetanî 30 saliyê de ne.

**Sedemên xwekuştinê**

Kurdistan di heyamê çend salên derbasbûyî de guhartineke zaf bi serde hatiye û xelkeke zor ji gundan ve ber bi bajaran hatine û xwendin û xwendewarî zêde bûye û hêdî hêdî pîşesazî û pêşketin derketiye rojevê, lê mixabin hêj jî edetên kevneşop bi ser civaka me de zal in û hêjî maye ku em derbasî modernîtê bibin, lê rastiya ku cihê dilxweşiyê ye, eva ye ku sunnet ji aliyê nifşa nû ve ketiye ber rexne û gazindeyan, û hêdî hêdî têkilî di navbera nifşa nû û cîhana pêşketî de dibîte sedema derbasbûn ji kevneşopiyê ber bi moderniyet û pêşverûyiyê. Bê şik ketin di nava rojeva qonaxa han de, qeyran û sistî û bê ser û beriyê diafirîne û bo derbasbûn ji vê qonaxê zirar û xesareteke zaf bi civaka kurdî bi taybet jina Kurd digihîje, ku piraniya wan nexwendewar û bê deshilat in, xwediyê pîşe û ciheke taybet di civakê de ninin. Lewma ev pirsa bûye sedema wê ku di çaxê hebûna pirsgirêk û berengar bûna tevî astengan de, bîr ji xwe rizgar kirin ji jiyanê bikin.

Sedemeke din ya xwekştinê di Îranê de Komara Îslamî ye ku di destpêka hatine serkara xwe de hetanî niha gelek yasa û xalên ne demokratîk di yasaya bingehîn de cihgir kirine û bi sepandin û meşandina wan yasayên kevneprestane yên dijî jinan astengeke mezin li ser rêya pêşketina jinan afirandiye û di encam de pêpeskirina bihayên mirovî, girîngî nedan bi vê texê ye ku niviya civakê pêk tîne.

Sedema din ji ber wê ku sîstema deshilatdar bi ser civaka me û malbata Kurd de "Mêrsalar" û sonetî ye û bo wê ku ew deshilate her li ser kar bimîne û cihê mêran di deshilatê de teng neket, fermanê bi jinê dide ku di çarçoveya ew rewişt û tîtalên berteng û hişk ku karîna bizav û livlivînê bi jinan re çinine, kar bikin û li hemberî xwastikên mêran, an dibe teslîm bibin an jî penayê bo kiryara veciniqêner a xwekuştinê bibin. Îca li ber wê ku jin lawaz û bêhêz e, deshilat jî li destê regezê beramber de ye, lewma piraniya wan



teslîm bûnê hildibijêrin. An jî taba wan êş û givaşan tu ninin û cendekê bedew yên xwe dikene gorî bo gehandina peyv û kilamên xwe bo mêr û deshilatê. Sedemên din yên wek zewacên neçarî û bi zor (kiçke li mezin, jin bi jinî, berxwîndan….), belengazî, feqra çandî, pirsgirêkên jin û mêran, pirsgirêkên malbatî, nebûna serxwebûna fikrî, nebûna ji hevtêgehiştin û diyalogê, berpirs nebûna yasa, dewlet û civakê li hemberî vê diyardeyê, meşandina tund û tûjiyê ji aliyê bab û bira, xesû, dayîk, (ji rêya lêdan, daxkirin, dijûn, sivikatî kirin û hwd …), pirsên namûsî, nizim bûna astê xwendinê. Ne serxwebûna aborî, bê hêvîtî, nebûna zaniyarî li ser yasayê, ku hemû ewane û pûte nedan û bikar ne anîna karê jinan di warên siyasî, çandî, civakî, abûrî de, derd û kovanên jinan li ser yek girantir û kûrtir dike û di encam de bandor û tesîra nigetîv li ser roh û mejiyê jinan dike û dibîte sebeba bêhêvîtî û vêzarbûn ji jiyanê û pena birin ber xwekuştinê.

**Çima jin ji boy xwekuştinê zêdetir şêweya xwe şewtandinê hildibijêrin?**

Ji ber vê ku çanda Kurdî wekî tîtal ciheke taybet bo jinê dîharî kirî ye ku pêkhatiye ji maleke girêdayî û berteng tevî komek tiştên menewî û matiryalî. Di çanda Kurdî de jin û mal bi hev re gotine, wate karê nav malê û xudan kirina zarokan. anku wekî girtîgehekê di girtîgehê de û bo her çûne derekê nirxekî giran bi kes û karên xwe didin, lewma jin di malê de zortir ser û kar bi alevên neftî û agir ve hene û piştî bê hêvî û teslîm bûn li hemberî arîşên jiyanê, penayê bo wan alevên ku bi salan pê re kar kirine, bi metodeke nigetîv wan alav û amrazan bi kar tînin û cendekê bedew yên xwe pê dişawitînin.

Pirsa xwekuştina jinan di civaka me de pirsek nû nine, û ne tenê pirsek girînge, belkû arîşeyeke zaf mezin e ku hetanî îro nehatiye çareser kirin. Ji ber wê ku rewşa zal bi ser Kurdistanê û hikûmetên dijî Kurd, roleke bingehîn di vê derheqê de lîstine, lewma ji bo bi destve anîna azadî, wekhevî, edaletê di navbera jin û mêrên Kurd de me hewcehî bi parve kirina deshilatê û pêdeçûnekê bi ser yasa û tîtalên kevn yên xwe û darêtina sîstemeke taze û wekhev li deshilata siyasî, zanistî, aborî …, mêzekirin bi jinan bi dîtineke berfireh û dilovanetir, çandina tovê hişyariya civakî … heye, ku bê şik evane dibine yekem gav ber bi jiyaneke şaristanî û demokratîk ku mafê mirovan û bi taybetî jinan diparêz e.

Lewre me bo afirandina jiyaneke azad hewcehî bi şorişeke civakî heye. Ku eve jî erkê hemû partî û rêxistin, navendên rewşenbîrî û azadîxwaz û hemû mirovên demokrat e ku hez ji bexteweriya civakê dikin.

## Yekemîn Kongreya Yekîtiya Jinên Demokrata Kurdistana Îranê



Yekemîn Kongreya Yekîtiya Jinên Demokrata Kurdistana Îranê di bin dirûşma **"di pêxema çalaktir kirina yekîtiya me di pêşdebirina xebata wekhevxwaziya Jinên Kurdistanê û tevgera milî demokratîk a gelê me de"** hate lidarxistin.

Rê û resma vekirina kongirê bi pişikdariya nûnerên hilbijartî yên jinan, Deftera Siyasî û Komîteya Navendî a PDK a Îranê û hijmarekî zaf ji xebatkarên din yên partiyê û herwiha hin rêxistinên jinan yên bajarên Hewlêr, Silêmanî û Koyê pêk hat. Kongire bi peyama birêz Gelawêj Hesenzade, endamê PJDK Îranê hate vekirin. Peyama Deftera Siyasî ya PDK a Îranê ji aliyê birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiyê ve hate pêşkêş kirin. Piştre gelek peyam hatin xwendin.

Kongre şeva 23'ê Xermananê bi serkevtin bi dawî bû.

**Hunermendê Kurd Birader li hevpeyvîneke bi Agirî re:**

## *KULTURA HUNERÊ HETA DI NAV ME DE NERÛNÊ, SAZIYÊN ME, GUHDARÊN ME Û HUNERMENDÊN ME WÊ KULTURÊ BIHÊZ NEKIN, MUZÎKA ME JI WÊ ZÊDE PÊŞ NAKEVE*

*Di cîhana îro de, bi pêşketina zanist û pêvajoya xwendebûna gelên dûrdest û hatine rojeva alev û emûrên pêşketî û cîhanîbûna wan, karî ye jiyana mirovan her rojê bêtir ji berê û dema kar û vehesiyana van pêtir biket. Armanca sereke a kar û çalakiyên mirovan vedigere bo xizmetkirin bi hevdu û dan û standinê. Yek ji aliyên herî pêşverû û berçav di cîhana îro de pêşketina çanda gelan e ku bûye sedema pêtir nêzîk û tevlîhevbûna wan û herwiha çûna wan ber bi mijareke nû ya ku bi cîhanîbûn hatiye bi nav kirin.*

*Lê di pêwendî tevî çand û zimanê gelan nabe rêve biçe, ku her sal di cîhanê de pêtir ji 10 zimanan ji nav diçin û çanda wan jî hêdî hêdî ber bi nemanê ve diçe. Gelê Kurd yek ji van gelan e ku xwediyê çand û zimaneke dewlemend û dîrokeke dûr û dirêj e. Lê mixabin di navbera çar dewletan de hatiye parvekirin û her van dewletan ji bo parastina berjewendiyên xwe zext û givaşeke zaf ji bo asteng kirina pêşveçûna çanda Kurdî xistiye ser milê gelê Kurd. Di vê navberê de erk û wezîfeya her Kurdekê ye ku ji bo parastina çanda gelê xwe û parek ji dîroka gelê Kurd ku îro di çivanok, helbest û starana Kurdî de hatine veşartin, dewlemendtir û paravtir bike. Her li ser van pirsên çanda neteweyî û hunerî, me xwest ku bi hunermendê qedirgiran, rêzdar Birader Mûsikî re hevpeyvîneke pêk bînin û ji rewşa starana Kurdî û pirsgirêkên li ser rêya huner û hunermendên Kurd, nemaze yên ku li derveyî welêt dijîn, agehdar bibin.*



Hunermend Birader Musîkî

**Mamosta Birader em dixwazin tu hindek li ser jiyana xwe bi me re biaxivî, tu kengê û li çi derê hatî dinê ? An jî bi giştî Birader kê ye?**

Ez beriya her tiştî sipasiya we dikim. Di xebata we de serkeftinê dixwazim. Li ser pirsa we dibêjim, ez sala 1958'an li gundê Musika li herêma Mêrdînê hatime dinê. Bavê min dengbêjekî herêmê bû. Ez dikarim bêjim min bingeha xwe ji deng û awazên bavê xwe û civata wî girtî ye. Bavê min gelek xweşbêj bû. Destan dixwendin û gelek behsa Evdalê Zeynikê û Hesenê Bezikê dikir. Gelek dengbêj û dengxweş dihatin Dîwana wî û kilam diavêtin berhevdu. Piştî dibistana yekem û navîn ez çûme bajarê Wanê ji bona lîseya Tenduristiyê. Min wî çaxî li tembûrê dida û stranên gelêrî dianîn ziman. Sala 1976'an bû min jî dest bi stranên siyasî kiribû, lê meyla min herdem li ser stranên dengbejiyê bûn. Sala 1977'an ez ji ber stranên siyasî ketim zîndanê. Min wî çaxî meselê bêtir fam kir û di zîndanê de tembûra xwe û bêjeya xwe pêşda xist û bi vî rengî dest bi çêkirina helbestan kir.

**Te kengî dest bi karê stranbêjiyê kiriye?**

Ez nizanim min kengê destpê kiriye. Lê dibêjim Mîlada min sala 1977'an ez ji zîndanê derketim û min li bajarê Wanê li nêzî dibistanê min konsereke biçûk da hevalên xwe yên dibistanê û min rahiste saza xwe û ez wê salê ji dibistanê dûrketim. Sala 1978'an ez beşdarî 2 şevan bûm li Wanê. Beşdarî şeva li Bedlîsê bûm, û herwiha berdewam kir.

**Destpêka karê te yê hunerî di bin bandora kîjan hunermend û stranbêjî de de destpê kir?**

Helbet min wî çaxî di warê hûnandina gotinan de **Seyda Cigerxwîn**, **Mela Cehfer** û **Dilbirîn** dişopand. Di warê mûzîkê de jî li gel dengbêjiyê min kesên mîna **Şivan Perwer**, **M. Şêxo**,**Tehsîn Taha** dişopand. Helbet Dengê Erîvanê jî li ber guhên me bû. Lê tesîra mezin ya bavê min e ...

**Gelo helbest û awazên stranan tu bi xwe çê dikî?**

Starnên min ji sedî 80'î yên min bi xwe ne. Wekî Ceme rêyne, Harûnê min, Şehîdeke Bênav im, Lo Dilo, Wê Salê, Millîtan, Helbesta Millîtan û hwd...

**Tu rewşa muzîk û strana Kurdî niha çawa dibînî?**

Welleh ez zêde baş nabînim. Ger huner têkeve destê dewletê ew jî mîna aboriyê pêş nakeve. Bav û kalên me mîraseke gelek dewlemend ji mera hiştine. Em her jê dixwin û lê zêde nakin. Baş e ku muzîka me derya ye û serdestên me reben in di vî warî de.Yan na niha kê dizane muzîka me wê di haleke xirabtir de. Pêwîst e hunermend qedrê hev bigirin û haya wan herdem ji hevdu hebe û hevdu temam bikin. Deng ji yek destî nayê. Rîtm temam nabe bi yek destî. **Kultura hunerê heta di nav me de nerûnê, saziyên me, guhdarên me û hunermendên me wê kulturê bihêz nekin, muzîka me ji wê zêde pêş nakeve.**

**Hûn dikarin derheqî pirsgirêkên hunermendan li derveyî welêt de çi bêjin?**

Xerîbî, aborî, siyasî û nezanî ji me re asteng in.

**Di çanda Kurdî de rola stranbêj û dengbêjan çi ye?**

Ev mijarek e serbixwe ye û niha ez nivîsekê ji bo kovara Tîroj amade dikim bi vê pirsê. Ez dê çend gotinan ji wê nivîsa xwe aresteyî vêderê bikim. Hebûna millettan li ser stûnên bingehîn disekine.Yek ji van jî ziman e. Ziman xizmetê ji wan stûnên din re dike. çand, dîrok û hwd... . Bê ziman wateya yên din tune ye. Kêmekê seqet e. **Zordestan bi sedsalan zimanê me qedexe kirin. Dibistan û zanîngehên me tune bûn. Lê her dengbêjeke me bû dibistanek û zanîngehek.** Ziman û çand û dîrok û wêjeya me xurt kirin û parastin, heta roja îro jî anîn. Mîraseke mezin ji me re hiştin. Em deyndarê wan lehengan in. Helbet xizmeta dayikan nayê ji bîr kirin. Dayikên me jî bi qasî dengbêjên me xizmeta ziman kirine. Ez destê hemû dayikan û dengbêjên me maçî dikim.

**Tu çi ferqê di navbera hunermendên stranbêj yên îro û denbêjên berê de dibînî?**

Stranbêjên me jî xizmetek mezin dikin. Bi saza xwe, bi dengê xwe. Lê dengbêjî gelek kûr û berfireh e. Dengbêjên me him dîroka me, muzîka me û şanogeriya me li ser piyan hiştine. Enstrumûnta wan ya mezin dengê wan û sermaya wan e.

**Mamosta hêla te ya nivîskarî jî heye, car caran di rojname û kovaran de helbest û pexşanên te têne dîtin. Gelo tu berhemên te yên nivîskî wekî pirtûk hene?**

Car caran ez di kovar û rojnameyan de dinivîsim. Dema betaliyê mehê 2 caran di rojnameya Azadiya Welat de dinivîsim. Ji ber zêdebûna karê min yê muzîkê car caran ez ji wî karê xwe bi şûnda dimînim, ji ber ku ez ne nivîskar im. Lê berhemên min hene, ez dixwazim di pêş de wek pirtûkekê pêşkêşî xwendevanan bikim. Hêla ez berê mafê tembûrê bidim. Ji pênûsê re jî Xwedê mezin e.

**Têkiliya te bi saziyên çandî yên Ewropayê an jî bi hunermendên vira re çawa ye?**
Bi saziyên hunerî yên Ewropayî re têkiliyên min yên balkêş niha tu nine. Demekê ez bi 2 girûpên muzîkê yên Hulendî re xebitîm. Me gelek konser jî bi hevdu re amade kirin. Demekê ez endamê saziyeke muzîkê bûm jî. Min dît ku ez dikevim bin bandora wan, min ew têkiliyên xwe sist hiştin. Ez berê dixwazim wekî Kurd em saziyên xwe û têkiliyên xwe bi hevdu re xurt bikin. Pêwîst e em hunermendên Kurd bi hevra projeyan çêbikin û deng bidin. Helbet têkiliyên xwe bi dinyayê re dikarin bêtir xurt û bibingeh çêkin.

**Bi giştî mana te li derveyî welat çi bandorekê li ser huner û jiyana te dike?**
Xeribî gelek zor e, mîna kiraseke ji hesin e. Gelek lehengên me di binê vî kirasî de ecciqîn û winda bûn. Kirasê hesinî, havînê dikele û zivistanê jî mîna bûzê ye. Li gel xerîbiyê aborî, nezanî û mîna gulekê ku ji baxçeyê xwe dûrketî ye, yanî ji civata xwe dûr ketib e.Yanî zehmetî gelek e.

**Tu îsal çûyî Amedê, te Kurdistan çawa dît?...Vê yekê çi bandorek li ser te kir?**
Beriya 18 salan ez mirî bûm. Piştî 18 salan dema rê li ber min vebû û ez çûme welat, min hişkir ku ez ji nûv ve hatime dinyayê. Min konsera Newrozê li Istenbolê pêşkêş kir. Li Amedê ez beşdarî konsera Festîvalê bûm. Helbet li Amedê jiyan cuda ye. Konser dayîn fexreke din e. Lê ya ji bo min balkêştir e, min konsera xwe ya mezin û yekem li Mêrdînê pêşkêş kir. Di jiyana şaredariya Mêrdînê de cara yekem bû ku konserek wisa mezin û balkêş pêk hat. Helbet ez nikarim wan hestan bînim ziman. Min li wir jî nikarîbû bînim ziman. Lewre min bi çend rondikên çavên xwe her tişt îfade kir û min kevokên dilê xwe bi stranan firandin ser bircên Kela Mêrdînê. Kevok ji dilê min firiyan, xwe danîn li bircên Mêrdînê, ketin qal û qultên giran, ketine sohbet a evînê, dost û heval li min civiyan ji Qosarê û ji Nisebîne ......................................

**Eger derfeta te hebe û pirsgirêkên civakî û aborî rê bidin te, rojekê tu yê bi yekcarî vegerî Kurdistanê an na?**
Ez ji xwe tu car ji welatê xwe dûr neketim. Eve ya ji ez li ser piyan???? hiştim. Xewnên min herdem li welat bûn. Heta niha jî. Mijarên xewnên min hina ji bûyerên welatê min in. Niha rê li ber min vebû û hez dikim li ber me hemûyan vebe û bi taybetî riya hevalên min yên hunermend vebe. Dinya biçûk e, îro livir im, sibê li welat im.

**Tu ji rojnamevan û kesên ku li ser huner û hunermendan dinivîsin an jî li ser wan bername û hevpeyvînan bi wan re çêdikin, karê kê baş dinirixînî? Mamusta tu karên Kakşar Oremar çawa dibînî?**

Karê ku Kakşar Oremar dike, helbet valatiyeke dadigire û kareke bi rûmet e. Pêwîstiya huner û hunermendên me bi kesên mîna Kakşar Oremar heye. Kakşar dosteke min yê ezîz e. Ez bawer im kesên ku ew naskirine hemû pêre bûne dost. Pênûsa wî gelek tûj e, lê Kakşar ewqas mutewazî û bidileke kurdewarî dike heta niha kesek ne êşandiye. Tenê pesindan û nasandina hunermendan kiriye. Lê di eslê xwe da rexnegir jî, ji mera lazim in. Ji bo pêşketina me pêwîst e hinek me rexne jî bikin. Kî çi bike jêre bimîne em riya xwe, pêşiya xwe baş nabînin.

**Dîtina te li ser hunermendên jêr çiye:**
**Mamosta Şivan Perwer**
**Şehrîbana Kurdî**
**Mezher Xaliqî**
**Necmedîn Xulamî**
**Nasir Rezazî**
Hunermend mîna fekê ne. Her yek tameke xwe heye. Her yek ji wan ciheke xwe yê taybetî li ba min heye. Mezher Xaliqî gelek bi nazikî û gazîn dibêje û ev jî min dihelîne. Helbet Şivan, Nasir, Necmeddîn, dostên min yên ezîz in û bi eşq li wan guhdar dikim. Şehrîban her çiqas nû be di vêrêda dengeke xam û xweş e. Têkiliyên me yên taybetî jî mîna ap û brazî ne u gelek stranên min ji xwe şirove kirine....
**Sipas ji bo bersîv dana te bi pirsên me û hiviya serkeftinê ji bo te dixwazin.**
sipas ji were û ji xwendevanên wera. Serkevtin ji bo me hemûyan ...

# Rojnameyeke kurdî ya hefteyî tevlî karwanê rojnamevaniya kurdî bû




Di roja 10.09.2004'ê, di dîroka rojnamegeriya Kurdî serkevtinek mezin pêk hat. Di vê rojê de yekem hejmara Rojnameya PEYAMA KURD, rojnameya giştî ya hefteyî, li Elmanyayê derket û hate belav kirin.

PEYAMA KURD ji 24 rûpelan pêk tê û nivîsên bi zaravayên Kurmanciya jorîn, Kurmanciya jêrîn (Soranî) û Zazakî diweşîne.




Li gorî agahiya rêveberên Rojnameyê, PEYAMA KURD dê li seranserî Ewropayê bête belavkirin.

Herwiha di daxuyaniya hejmara yekem de hatiye: "Nîşana *PEYAMA KURD* rojnameya "Kurdistan" e. Ew ser wê rê û rêça rojnamegeriyê ye, ya ku Midhed Bedirxanê gorbihûşt hîmê wê danî ye û piştre ser destê rewşenbîrên kurd ên nemir Mîr Celadet û Dr. Kamiran Bedirxan hatiye berdewamkirin û îro jî gihaye qonaxeke gelek pêşketî. Bi taybetî li Başûra welatê me, pêşketina rojnamegeriyê ciyê şanaziyê ye".

Li ser navê xebatkarên Rojnameya Agirî em pîrozbahiyên germ pêşkêşî xwendevanên rojnamevaniya Kurdî û rêveberên birêz yên Rojnameya PEYAMA KURD dikin û hêviya serkevtin û berdewambûnê di kar û barên wan yên pîroz de dixwazin.

Zanyariyên pitir derheq Rojnameya *PEYAMA KURD li ser înernêtê*:
http://www.peyama-kurd.com/

E Maila Rojnameya *PEYAMA KURD*:
info@peyama-kurd.com

# Hûrbîniyeke kurt li ser çîrok û romana Kurdî li Rojhilata Kurdistanê

**Hesen Îrandost**

***Pişka 2 û Dawî***

Hêza bijartin û rexne û gengeşe kirinên germ li ser çîrokan, hizrên nûxwaz afirandin. **Siyamend Fituhî** (Kalê), Selaheddîn Ereb (Birsî), Nesrîn Ceferî (Meyt), Yûnis Gulmihemedî (Xewn).

Wê rewşê pêwîst dît dîsan hin kesên din jî, di kêbirkanê de bidorînin.

Lê xwe parastin û nûxwazî di ramanên Mihemmed Remezanî de diyar bûn. Lewma bi çîrokên xwe yên Sê Pêplîkan, Qalûnçekan, Bêlayen, Xûn û Sîqe Tûre, Eynek û semek, Bomelerze, Kabrayekî Awa, Galte û Gelek Wergerên din, xwe di meydanê de sepand.

Roj bi rojê xwendevanên şareza û rexnegeriya nû derkete holê. Êdî xwendevanên rexneger ji nêçîr digeriyan. Kê ketiba ber hişanê nirxandina wan digiviştin û di mîzana bo kî dinivîsî de dikişandin.

**Celal Melikşah** ku çelengesiwarê qada wêjeya Farsî jî bû, peyiv û bêjeyên Kurdî siwarê pênûsa xwe kir û bi çîrok ramanên xwe, Bilbilî Tenya, Raz, Dilî Hêwa; Marû, Gaseberd, Cexzî Evîn, Nûser û Tapû û …… Girnijînek din xiste ser lêwên wêjeyê di Rojhilata Kurdistanê de.

Ji aliyê din ve diçûn da ku dîtin û Ramanên Kurdî ku ji xweza û azayî û emrazên nû yên vehunandinê û bi bûyerên xwezaya Kurdistanê ku hest û atîfeyeke taybetî hebû meydana wêjeya Farsî jî dagîr bikin. Goristana Xerîban Romana Îbrahîm Yûnisî ku bûyerên serdema Museddiq di Kurdistanê de û romana qada Dubarê Girîst (Bûyerên Kurdistanê ji heman nivîskar).

Sala 1990'î rewşa geş ya wêjeyê bi hêviya dîyariyan bû. Ku ji nişkêve **Romana Hawarebere** ya **Fetah Emîrî** meydan lerizand.

Helbet rûyê destpêkê ya romana Kurdî dîsan ji vê beşa Kurdistanê bi romana **Pêşmerge** ya **Rehîm Qazî** bişkivî bû.

Ceşna rexne, zimanê duyem ji zimanê yekem, ji bo hawarebere jî rêve çû ku wekî Fetah Emîrî ji bo min bas kir, ez bi Kirin ji pîrozbahî û xweşbînî û rexneyên tûj û tûre hatme namebaran kirin.

Êdî çîrokên kurt wek zimanê neteweyî û xelkî hêdî hêdî geşe dikirin.

Bi wê dahênanê, xemlandinê, bîr û baweriyê, ramanên veşartî, wediguhastin. Nivîskaran çîrokên xwe ji ziman û diyalêkta herêmî rizgar kirin û bi rûçikeke neteweyîtir û kêrhatîtir tevî karwanê xwe selmandinê bûn.

**Eta Nehayî**; bi çîrokên Gurhelken, Rabirdûyek Le Agir da, Çawerwanî, dirozî Zil, Legel Koçî Peresêlkeda, Xuy lê aşkera kirdim.

**C.Melikşah**; dîsan bi çîrokên Heval, Segî Jîne Xor, Xak meyl bire, Hemedî, Dar Sezay Tawan.

**Perwîz Cihanî**; bi Korê Takane, Kalo.
**Riza Babaxanî** ; Bilîsey Evîn, Tebî Tupîn.
**Amîne Azîzî**, Mamosta.
**Nasir Wehîdî**; Goristan.

Herçend hinek pir hindik di meydanê de xuya bûn. Lê berhemên baş û hêja pêşkêş kirin.

Ev şêweya berfireh û cîhanî, civakî, girîngtirîn şêweya wêjeya dunyayê, ku eger navê vê çîroka Kurt be, temenê wê di cîhanê de sêsed sal û di Îranê de jî 70 û ji bilî çîroka pêkenînî Geda ya Hesen Qizilcî û romana Pêşmerge ya Rehîm Qazî, tevî vê babetê di Kurdistanê de ji hejde salan derbas nabe.

Gelek caran bîr û bawerî li ser hemû tiştekê zal e. Ev yeke bîr û nêrînên nivîskar û kûrbûna diyarokên diyarokên civaka ku nivîskar tê de dijî, nîşan dide. Ev bizav û livîna kûrtir ji helbestê, dînamîkbûn û helsorana nivîskar ji bo eyankirina pilanên girîng zêde dike.

Çîroknivîs ji jiyana asayî cuda nine. Lêbelê mentiqa digel xelkê asayî cuda ye.

Avahiya wî ya çargûşe, dem, cih, bandor, Hussên Şîrbegî jî tînin meydanê. Tase, Wurç û Gêjî Dilovan, Rexş, Şûre Law. Heta ku di encamê de berhemeke wî di qalibê çîrokên kurt de vê dawiyê hate bazarê. Helbet berî wî Eta Nehayî çîrokên xwe yên kurt weşandibûn. Sala bihorî jî berhemeke wî bi Navê Gulî Şoraw dîsan ketibû destê xwendevanan de.

Fetah Emîrî piştî du salan pey romana xwe ya yekê, romana duyem ku dihate gotin berdewamiya romana yekem e bi navê Mîrza, hêviyên evîndarê romana Kurdî geş kir. (Ya niha jî romaneke nivîskar bi navê Xewe Berdîne di bin çapê de ye û bi zûyî dê bigihîje destê xwendevan û rexnegeran. Belkî jî heta niha hatibe weşandin)

Herçend hinek li ser wê baweriyê ne ku çîroka Kurdî qasî çend salan Rûçikê hikayetan bi xwe ve girtî ye, lê hêdî hêdî mentiqeke rojane û aloziyên jiyanê, mejiyê hin nivîskaran daye ber pêlên xwe. Lewma pêşerojeke ron ji bo vê mijara wêjeyî ya sereke di Rojhilata Kurdistanê de diyare. Êdî roj nine ku nivîskareke ciwan bi çîrokeke xurt deriyê kovar û rojnameyan nekute.

Nivîskar jî dizane êdî rewşa salên berê nema ye. Heta di kovar û rojnameyekê de çîrok û berhemek bête weşandin, gereke ji bêjînga desteya nivîskar û rexnegeran ve derbas bibe. Herwisa rûpelên rêniwêniyê riya nivîskaran ji bo ku berhem yan jî çîroka xwe pêjayîtir bidin bazarê, sererast dike. Her ji bo wê yekê jî wexta min hewl da ku lîsteyekê tenê ji bo navê nivîskaran berhev bikim, xwe di 6 – 7 rûpelan da.

Di vê dawiyê de **Nasir Wehîdî** û herwisa **Kerîm Danişyar** her yekê romanek dane weşandin, lê mixabin hêj negihîştine derveyî welêt.

Rewşa hanê meydan ji bo çîrokên zarokan jî xweş kiribû. Di destpêkê de kovara Sirwe paşê Awêne û Adîne, Awiyer û her kovar û heftename û weşana ku derdikeve, rûpelên taybet ji bo zarokan jî hatine berçavgirtin. Ji çîrokên kevnar yên Kurdî wekî Gurg û Riwî, Dîkil û Mirîşk bigire heta yên nûjen ku bi pênûsê xwedî ramanên vê mijarê mîna: **Xidir Behrambegî**, **Nesrîn Ceferî** (Yek Didan û Du Didan), **Seyd Xidir Mîr Seyidî** (Çale Gurg ), **Seyd Kemal Nizamî**, **Serwer Ezîzî** (mîrxonawke), **Zeyneb Per Abadî** ( Razî dilî mirîşk) û bi taybet **Mihemmed Sadiq Îsmaîlzade** bi çîrokên Xepê, Gulle û Dulke, Peyman, Kûxa, Perîs, Kajîley Sererû, ev hêla pêwîst ya wêjeyê xurt kirine. **Roza Haşimî**, **Evîn Fituhî** û gelekên din nahêlin rûpelên zarokan bê berhem bimînin. Berhema **Perwîz Cihanî** bi navê Peyam û Havara Masiyan di qalibê kêşûdar û her wisa berhemeke Elî Mihemmed Remezanî di wan çend salên dawiyê de dîtine.

Weşana kurt ya çîroka biwar di yekem hejmara kovara Sirwe da ev mizgînî anî ku asoyeke ronahî ji çîroknivîsiyê di vê beşa

# Hurbîniyeke kurt ji çîrok û romana Kurdî li Rojhilata Kurdistanê

**(*Beşa 2)***

**Doma: R.14**

Kurdistanê de tê hêvîkirin. Lê ev hêviya wekî kefa ser avê bû. Ji ber ku berdewamiya çîrokê çi
ji aliyê form, çi jî ji aliyê şêwe, wêneyê hikayetê bi xweve girt. Paşê di kovar û weşanan de hinek çîrokên dirêj di qalibê tenz (Mîzah) hatine weşandin ku qet taybetmendiyeke çîrokê tunebû û ji qalibê tenzê bi e

Hekî em vê rewşa eyankirinê hikayet bi nav bikin, ji xwe hikayet beşek ji folklorê ye ku a mebesta xwe, di çarçoveya hikayetê de dadirêje. Lê ev şêweya eyankirinê ji bo çîroka nûjen nahê bi kar anîn. Di hikayetê de rolê cih û pêwar û pêştir di mêjiyê nivîskar de hatiye avakirin. Nivîskar ji bo selmandina gotinên şîretî bêhtir ji rola mirov e. Lê di çîroka nûjen de nivîskar dibe rêvîngê Lêger di hundirê mirov de û ev lêgerîne dibine bûyerên çîrokê.

Hêla eyankirina ku encam di mêjiyê nivîskar de hatiye destpêkirin, niyatiyek di vê çîrokê de nine û meşek filaşbek nîşan dide.
Pêwîst e dahênan di navbera pênûs û kaxez û nivîskar de pêk bê.
Di çîrokê de dahênan û peydakirin heye, lê di hikayetê de na.
Kurte çîroka Bowar Berî hejde salan hatiye nivîsandin. Ezmûn û tecrubeyeke dirêj di nivîskar de diyare. Di dawiyê de diyare ku nivîskar rêzek taybet ji bo xwendevan datîne.
Dibêje; paşan wegera û serî daxist û be barî giran û keserewe kewte rê. Xirmenalekanî bonî behî, bonî şîn û şepor, bonî feramoşî lêdehat;
Nivîskar vir de pişta xwe bi wêneya helbestê girê dide.
Eve deshilatdariya nivîskar li ser ziman diselmîne. Ziman, zimanê çîrokê ye û herçend dem û cih bi eşkereyî bi kar nebirine, lê tê de diyar in.
`` **Kef helxirandî**, Çom nişanderî werzî here pir avî Sale`` Hokarî bi ciwantirîn şêwe hatiye darêtin.

Bi derbasbûna dem û salan, çîrok gelek guherînan bi xwe ve dibîne, çîroka **Mîne** paş çend salan, ji hemû qalibê çîrokê dûr e û tenê diledildana nivîskar digel zarokeke/a hejar û belengaz e.

Chîroka **Beser û Şiwên**, çîrokeke rialî ye û ji teknîka çîroknivîsiyê bê beş e. Ziman zimanê wêjeyî nine û axaftina xelkê kûçe û bazarî ye. Ev sojeya dikare ji aliyê nivîskareke/a şareza ve gelek serkevtî bibe.

Gelek çîrokên din, nivîskar wekî fotogirafîk, çi dibîne wisa jî dinivîsîne û bîr û dahênan tu rolekê nabînin.

Di gelek çîrokan de wek **TOLEY EJDEHAK** kesayetiyan baş nigar dike û di encamê de sernakeve û dest davêje şiroveyên zêde û pesnkirina kesayetiyan.

Hin çîrokên wek **Xecîlê**, Rûyê xem, Keser, Bêbextî û tenêtiyê tê de zal e.
Hin di qalibê çîrokên rialî û bi şêweyeke raportî, bûyereke asayî radigihênin. Wek çîroka **jiyanî Asayî**.

Gelek caran nivîskar dîsan pişta xwe bi çîrokên gelerî girê dide û bûyerên evîndarî ya Kur û Keçekê vedigerîne. Têma gelek kevn e û pir caran li ser wê babetê hatiye nivîsandin û heta fîlm jî li ser hatine çêkirin.

Hin çîrok wek **Avatî Jîn** hestên nasik tê de diyar in. Zimanek pir û tijî heye û di rastiyê de serhildaneke ber bi qonaxa nû ve, û pêwendiyeke rasterast bi çîroka nûjen ya cîhanî re heye.

Hin çîrok ji çend perdeyan pêk tên ku di rastiyê de kurte şanoyek in. Cih û dem bi başî diyar in, çîroknivîs ji rêbaza rastîxwaziyê xwe rizgar dike û şêweya Surêalîsm heldibijêre. Eve pirek e di navbera qonaxa çîrokên kilasîk û qonaxa nû de. Bi vê yekê dikarim bêjim çîrokê di Rojhilata Kurdistanê de, her çend ku bi hejmareke kêmberhem wekî pirtûk hatiye weşandin, lê bi gavên avêtî, bingeha pira navbera çîroka cîhanî û ya Kurdî hatiye danîn û serkêşê vê karwanê jî komeke xort û xwedî berhemên taze ne ku hatine meydanê.

# Soz û rastî

**Dr. Yasîn Dêrkey**



**Te dibrat**
**Li ber agirê dilê min**
**Hemû rengên hêviyên xwe**
**Te parçe dikir**
**Li ser destê xwe**
**Pirt pirt**
**Hemû demarên laşê min**
**Ji ber ku te dizanî rastiya min**
**Û sûzên wan**
**Te dilûrand**
**Li ber dergûşa bextreşiya**
**min**
**Hemû curên stiran û**
**helbestên min**
**Te dinivandin**
**Di nav singa xwe da**
**Hemû şitlên xem û kederên**
**min**
**Lê tû dimayî**
**Di landika azadiyê da hişyar**
**Li ser arzêla bendewariyê**
**Û qûrtek şûr ava rastiya min**
**Her ev te divexwar**
**Û te gazî dikir**
**Bi dengeke bilind**
**Ka soz, ka peyman**
**Yên we dayîn**
**Beramber gora şehîdan**
**Ey partîzan**

# Xelata mezin ya Festîvala Navneteweyî ya Fîlman a " SAN SEBASTIAN" gihîşte Fîlma Kûsel jî dikarin bifirin ya Derhênerê Kurd, Behmen Qubadî

**Nîhad**

Fîlma Derhênerê Kurd, birêz Behmen Qubadî ya ***kûsel jî dikarin bifirin*** (Kîselekanîş detwanin bifirin), wekî baştirîn fîlm, xelata **Sedefa Zêr** ya Festîvala navneteweyiya Fîlman a " SAN SEBASTIAN" li Ispanyayê vergirt. Eve 52'mîn Festîvala " SAN SEBASTIAN"'ê ye ku birêve diçe. Festîval di navbera rojên 16-28'ê Septembera 2004'an hate lidarxisitin. Herwiha xelata mezin ya nivîskarên Ispanyayê jî, bi fîlam Kusî jî dikarin bifrin, ya Behmen Qubadî hate dayîn. Rojname û televizyonên Ispanyayê sernavên yekem yên xwe bo balkişandin bi ser vî xelatî, terxan kirin.

Ev fîlma berhema nû ya derhênerê Kurd, Behmen Qubadî ye. Fîlm bas ji çîroka jiyana penaberên Kurdistana Îraqê di dema êrîşa hêzên hevalbend bi serokatiya Emerîka bo ser Îraqê di yek ji kempên tûxîbê Îran û Îraqê de diket.

Fîlma nû ya Qubadî, kusî jî dikarin bifirin ku di roja dawiya Festîvala " SAN SEBASTIAN" ya Ispanyayê, di pişka kêbirkiyê de hate nimyîş kirin, karî di navbera 16 fîlm ji derhênerên navdar yên 14 welatên cîhanê de bibe yekem.

Fîlma Kusî jî dikarin bifirin, dê li Tehran û piraniya bajarên Kurdistana Îranê bihête nîşan dan. Belavkirina Îranî ya vê fîlmê şirketa Hidayet Fîlm e, û weşangera cîhanî ya wê, ji stûyê 2 şirketên Firanseyî bi navên **Mîlîmij** û **Bek Fîlmz** e. Qirar e ev fîlma ji destpêka meha Rezberê li çend bajarên Kurdistana Îraqê wek Hewlêr, Silêmanî, Kerkûk, Duhok û ... bihê nimayîş kirin. Derhêner Behmend Qubadî qirar e di dema nîşandana fîlman li Kurdistana Îraqê, bi xwe li wir amade be.

Hêjayî gotinê ye ku, bi sedema pêşwazî kirina berfireh ji Fîlma Kusî jî dikarin bifirin di Festîvalên TORONTO û SAN SEBASTIAN'ê de, mafê weşana vê fîlmê ji aliyê 17 welatên cîhanê wek: Kanada, Emerîka, Elmanya, Ispanya, Îtaliya, Swîs, Beljîk, Birizîl, Kureya Başûr, Firanse, Ingilistan, Mikzîk, Kulumbiya, Koba, Arjantîn û ... ji hêla weşangera cîhanî ya wê, şirketa Firanseyî ya Bek Fîlmz'ê ve hatiye kirîn.

Li gor daxuyaniya 52'mîn Festîvala navneteweyî ya Fîlman a " SAN SEBASTIAN" li Ispanyayê, ji aliyê şanda dawerên vê festîvalê,




**Hunermend Behmen Qubadî, dema wergirtina Xelata yekem ya Festîvalê**

Aldirîç Tamsin û Kiniye Nîlsin wekî baştirîn leyîstvanên jin û mêr hatine naskirin û xelata taybet vergirtin.

Festîvala " SAN SEBASTIAN" ji sala 1953 ya Zayînî – 53 sala pêş – li bajareke bi vî navî li parêzgeha Bask ya Bakura Ispanyayê tê lidarxistin û ji giringtirîn festîvalên navneteweyî tê hesibandin.

Derhênerê Kurd, Behmen Qubadî di sala 12.11.1347'ê Rojî (1969) de li bajaraê Bane ya Kurdistana Îranê ji dayîk bûye. Behmen Lîsansa Derhêneriyê ji zanîngeha Deng û Reng (Sida û Sîma) ya Tehranê wergirtî ye. Ji temenê 12 saliyê ve bi malbata xwe re di bajarê Sine de dijî.

**Pêşwazieyeke germ ji Kûsel jî dikarin bifirin di Festîvala "Toronto" ya 2004'an de**

Herwiha Fîlma Kusî jî dikarin bifirin ya Derhênerê Kurd, Behmen Qubadî di Festîvala Sînemayî ya Toronto ya 2004 de jî, beşdar bû. Qirar bû di 2 geran de, di rojên 10 û 12'ê Septemberê de, li Festîvata "Toronto" fîlma Kusî jî fikarin bifirin bihête nîşan dan, lê bi sedema pêşwaziya zaf ya xelkê, fîlm 2 carên din hate pêşkêşkirin.

Ev serkevtina mezin ji hunermendê Derhêner yê Kurd, birêz Behmend Qubadî pîroz be. Bi hêviya serkevtinên pitir di warê hunera fîlm û sînemayê û xizmet bi pêşvebirina sînema ya Kurdî.

***Jêder:***

***1. Mijfîlm***

***2. Rojnameya IRAN, çapa Tehranê***

## Gotinên mezinan

❍ Av ku dikeve cihê teng, deng dide.

❍ Av çi car bê çavkanî nabe.

❍ Av ku da ser serê mirov, çi bihostek, çi çar bihost.

❍ Aqilê mirovan çavê nepenî yê wan e.

❍ Axa kendala dibe tazetiya mala.

❍ Eger agir berbe Rêlê, ter û hişk bi hev re dişewitin.

❍ Donê me serê me dixe.

❍ Dest li ser destan, heta esmanê heftan.

❍ Dema heyî, şilik, dema neyî, keser û kilil.

❍ Dewlet heye, êl bira ye, dewlet tune, êl dijmin e.

❍ Dar tune ku ba lê nexe.

❍ Dayika her eyb û kêmasiyekê, feqîrî û hejarî ye.

❍ Diravê sipî bo roja reş.

❍ Diz diz e, çi hêk bir, çi ga bir.

❍ Dijminê biçûk mezin bigire.

❍ Tas ji girarê gerimtir e.

❍ Qise hezar in, du bikar in.

❍ Kengirmast di dema xwe de xweş e.

❍ Pişta xwe binêre, piştiyê xwe hilgire.

❍ Ger sebir hebe, şîr dibe nivîşk.

# Di bîranîna 20'mîn salvegera koçkirina derhêner û fîlmçêkerê kurd Yîlmaz Gûney

## Bozê Sîna

*Xwendingeha hunera Kurdî di dîroka pir evraz û nişîv ya xwe de gelek hunermend û hogirên taybet bi warên cur bi cur yên hunerê, bi xwe ve dîtine. Zaf hunermendên leheng, şoreşger û egîd di pêxema xizmet bi huner û zimanê Kurdî û nîşandan û xuya kirina bextreşî, belengazî û zilimlêkirina gelê Kurd ji rêya hunerê ve serhildane û xebat û têkoşîn meşandine. Gelek ji wan, ji malbatên feqîr û destkurt di gund û bajarên Kurdistanê da rabûn û bo gihîştin bi armancên mirovî yên gelê xwe xebat û fidakarî kirine.*

*Bê şik hunermendê derhêner û fîlmçêker yê Kurd (Yîlmaz Gûney) ku di sedsala 20'an de hate nava hunera Kurdî û gelek afranadinên mezin di warê hunera Sînemaya Kurdî de çêkirin, ku qet nabe ji bîr biçe. Yîlmaz di roja 9'ê Septembra sala 1984'ê Zayînî de li Parîsê çû ber dilovaniya Xwedê. Roja 9'ê Septembera îsal (2004), 20 sal bi ser wê bûyera nexweş – koçkirina wî hunermendê mezin yê dîroka hunera Kurdî - derbas dibe. Lewma hewce ye ku em baştir wî hunermendê neteweyî yê xwe nas bikin.*

**Jiyan, berhem û xebatên hunermend Yîlmaz Gûney**

Yîlmaz Gûney xelkê Kurdistana Turkiyê, di sala 1937'ê Zayînî de li gundê **Yînîca** girêdayî bi herêma **Edenê** ji dayik bûye. Seba hejarî û nedariyê dayik û babê wî, gundê xwe bicî hêlan û ber bi bajarê Edenê ve koçber bûn. Serbarê wê çendê ku Yîlmaz hetanî temenê 14 saliyê, şagirdê dikandaran bû, lê dema ku ev ji şola xwe ya rojê xilas dibû, diviya bi emrê babê xwe çûba xwendingehê, hetanî xwandin û nivîsînê fêr bibe û sibeynê rojê bikaribe bi hisab û xerca dukana babê xwe ya Penbû (loke) firotinê ragihîje. Yîlmaz hevdem tevî kêşana êş û elemên zor karî di warê xwendinê de serkevtineke berçav destve bîne û heza nivîsandinê ev ber bi aliyê nivîsandina çîrokan ve hayda.

Sala 1952'ê Zayînî, yekem Romana wî di kovara **Bîr Gûn** ya Turkî de hate weşandin û di sala 1955'î de çîrokek derheq jineke reyetî ku ji xwedan milkêman re gotibû: "Hinde nakêşe dê dashilat û hakmiyeta we dawî were", Nivîsand. Weşana wê çîrokê bû egera wê çendê ku nivîskar bikeve girtîgehê û dadigeh wî bi 7 sal û nîvan hepsê û 2 sal û nîvan ji dûrxistinê mehkûm biket. Yîlmaz di halekê de ku xwendekarê çiqa aborî li Stenbolê bû sinaryoyek bi navê **"Alageyk"** nivîsand ku paşê bû fîlm û wî bixwe di leyîstina wê da rolê yekem hebû, seba wê fîlmê ev careke din hate dadigehî kirin, lê berî ku bihê girtin hilat.

Sala 1961'ê Zayînî polîs cihê nepenî yê wî peydakir û ev girtin û careke din bi 18 mehan hepsê hate mehkûm kirin û di wî çaxî de çîroka **Reben Mirin** nivîsand. Sala 1963'ê Zayînî Yîlmaz di yek ji şirketên sînemayî de damezrî û li bajarên Turkiyê digera û dîtinên xwe dikirne sinaryo. Yîlmaz di dema 5 salan da pitir ji 60 fîlman çêkir ku cuda ji nivîsandina sinaryoyan ji wan fîlman re, rolekî bingehîn di lîstina wan de hebû, hindik ji wan fîlman wek: **Akad** û **Bi Navê Qanûnê** bûne egera navdar bûna bêqas ya wî, ev navdar bûn hetanî qasekê bû ku civatên xelkê, Yîlmaz bi **Sultanê zulmlêkirî yê Sînemayê** navdar kir.

Aqibet xwedanê wê şirketa ku Yîlmaz di wê de şol dikir ji tirsê wê çendê ku Yîlmaz bi keseke siyasî hatibû nas kirin û herwisan



çend caran ketibû girtîgehê, ew di şirketa xwe de derêxist. Yîlmaz piştî derketin ji wê şirketê fîlma **"Seyyit Han"** çêkir ku di wê da bûyerên Kurdistanê û çawaniya cil û berg û tîtal û resmên jiyana Kurdan hatibûn nîşandan.

Sala 1972'ê Zayînî bi buxtana wê çendê ku Yîlmaz di mala xwe da neyarên dewletê xwedan kirine, radestê hepsa Artêşê ya Selîmiyê hate kirin û di girtîgehê de wî çend çîrok wek: "Selîmiye Oçlemesî" û "Selîmiye Mektoblari" nivîsandin û şandin derveyî hepsê.

Sala 1974'ê Zayînî Yîlmaz ku taze ji girtîgehê derketibû, bi buxtana dest hebûn di kuştina şanoyî ya Turk zimanekê de ji nû ve bi 18 salan hepsê hate mehkûm kirin. Di wî heyamî de jî wî çend çîrok û Şanoname bi navên **Dûr** (Sürü) û **Rê** (Yol) û hwd ... nivîsandin, ku seba yek ji wan bi 18 salan hepsê û 5 sal û hindikê dûr êxistinê hate mehkûm kirin. Wî di hepsê de nameyeke servekirî ji Sîniyor Firnandz Herêra rêveberê Fistîvala Sînemayî a Faladîd li Ispaniyayê şand ku sexmeratî wê jî 5 salên din heyamê hepsî bûna wî zêde bû. Piştî careke kin dadgehê ew bi 7 nimûne sûçên din gunehbar kir û li ser hev heyamê hepsa wî gihîşte 100 salan. Lê Yîlmaz rihet nerûnişt û wî di hepsê de babet dinivîsandin û ji hogirên xwe re dişande derveyî girtîgehê, wan jî dikirine fîlm, ku yek ji wan fîlman bi navê Dûr (Sûrû) di Ewropayê de nav û deng derxist.

Sala 1980'an, Yîlmaz di hepsê da daxwaza izneke çend rojan ji dadgehê kir heta ku seredana mala xwe biket, lê dema ku daxwaza wî hate pejirandin û ew ji hepsê derket, yêkrast çû Parîsê. Deshilatdarên Turk ji hilatina wî tirsiyan û gişt şano, fîlm, çîrok û heta navê wî di welatê Turkiyê de qedexe kirin.

Sala 1982'e Zayînî, dema di Fistîvala Kan da, fîlma **"Yol"** ya Yîlmaz xelata yekem wergirt û rojnameyên cîhana azad ev hinde derheq wê nivîsandin ku êdî ev bû bi kesayetiyeke navdar yê sînema cîhanê.

Sala 1983'ê Zayînî wî fîlmek din bi navê Dîwar (Endise) li Firanse çêkir ku roj bo rojê nav û dengê Yîlmaz zêdetir kir.

Aqibet Yîlmaz di roja 9'ê Septembra sala 1984'ê Zayînî de, di nexweşxaneyeke Parîsê de, ji ber nexweşiya penceşêrê çû ber dilovaniya xwedê û, cenazê wî ber bi Enstîtûya Kurd li Parîsî hat veguhastin û hetanî 14'ê wê mehê her li wê derê ma. di wî heyamî da bi hezaran kes ji xizmên wî û hunermend û hunerhezan bo xwatirxwestina yêkcarî ji Yîlmaz, seredana cenazê wî kirin û serexweşî ji xêzan û keça wî kirin. Misyo "Jak Lang" Wezîrê Perwerde û Elimandinê yê Firanse û her wisan hinek ji kesayetiyên Firanseyî di wê rê û resmê da pişikdar bûn. Fransowa Mîtran Serok Komarê wê demê yê Firanse - ku di wî çaxî da li Parîsê nebû - ji rêya xêzana xwe ve taceke gulan şande ser gora wî hunermendî. Sefîrê maqûl yê Yûnanê li Firanse bi nûneratî ji aliyê Serok Komarê wî welatî û herwisan zor kesayetî û hunermendên cîhanî wekî Patrîk Jaspîn û Sekreterê yekem yê Partiya Sosyalîst a Firanse, berpirsyarê têkiliyên derveyî Firanse û herwisan Serokê Yekîtiya Karkerên Partiya Komonîst ya wî welatî û nûnerên Partiyên Kurdî li derveyî welêt û herwisan nêzîk 20 kes ji nûnerên rêxistinên Turkan li Ewropayê di rê û resma serexweşiyê da seba çûna Yilmaz bo ser dilovaniya Xwedê pişikdarî kirin, herwiha hezaran name û tilgiraf seba wê xisara mezin gihîştine Enstîtyûya Kurd ya Parîsê

Roja 14'ê meha Septemberê cenazê Yîlmaz ji Enstîtûya Kurd ber bi meydana "Rîpoblîko" (Cimhoriyet) û li wê de rê jî, di nava aqara xelkeke zaf de ber bi Goristana Pêrlaşêzê a Feransê ku merqedên hemû kesayetiyên navdar yên Parîsê li vir in, hate veguhastin û teslîm axê hate kirin.

Bi boneya salvegera 20'an ya koçkirina derhêner û fîlmçêkerê kurd Yîlmaz Gûney, Enstîtûya Kurdî ya Parîsê di salvegera koçkirina wî hunermendê mezin li ser gora wî civîneke bibîranînê lidarxist. Herwiha ew dê ji 29'ê vê mehê ta 12'ê meha bê, li sînemaya l'Archipel 10 fîlmên Gûney pêşkêş bike.

Bi vî awayî hunermendê nemir Yîlmaz Gûney wekî zor kesayetiyên siyasî, rewşenbîr, nivîskar û hunermendên azadîxwaz yên gelê me dûr ji axa welatê xwe serê xwe danî û bo xatira xwe ji malbat, gel û mirovahiyê kir.

**Riha wî şad be.**

### 70 sal ji jiyaneke pirbar derbas bûn...

# (Jiyana Rewşenbîr, Nivîskar û Xizmetkarê Çanda Kurdî Mamosta: Wezîrê Eşo)



**Kakşar Oremar**
kakshar_oremar@yahoo.de

**Jiyana Wezîrê Eşo**

Kurdên Soveytistana berê tevî ku bi hejmara xwe kêmin jî, lê bi qasî hemû Kurdên Kurdistana mezin xizmeta çanda Kurdî kirine. Di wan salên reş de ku rewşa siyasîya Kurdan li her çar perçên Kurdistanê tevlîhev bû, radioya Êrîvanê mîna zanistgeheke gerok hemû rojê li mala Kurdan bû. Bi rêya wê radioyê hinekî giraniya xemên bindestiyê dekewî. Helbestvan, dengbêj, hunermend, siyasetvan, nivîskar û rojnamevanên Kurd di radioyoya Êrîvanê de berhemên xwe pêşkêş dikirin. Dengê xerîbîya Kurdan li Kurdistanê belav dikirin. Ji rêya dûr dersên ziman û evîna welat di dilê Kurdên bindest da şîn dikirin. Ji bo wan roj û salan, em tev deyndarên Kurdên komara Ermenistanê û xebatkarên radioya Êrîvanê ne. Mamosta Wezîrê Eşo di nava Kurdên Sovyetistana berê de xwedî kedeke berçave. Werin heya eymetên me saxin, em qedirê wan bizanîn.

Nivîskar, rojnamevan, zaniyar û wergervanê Kurd yê bi nav û deng Wezîrê Eşoyê Hûtî, 1ê mijdara sala 1934an li paytextê Gurcistanê (Tiflîsê) di nava malbatek nîvhal xweş da, hatiye dinê. Navê bavê wî Eşoyê Hûtî û navê diya wî jî Kara Ûsiv e. Ew 8 xwîşik û bira bûn û 4 ji wan mirine û niha du bira û du xwîşik saxin. Birakê wî yê bi navê (Şîr Elîyê Eşo) 20 salan serokê para cerahîyê ya nexweşxana bajarê Sipîtakê(li welatê Ermenistanê) bû. Ew di hemû Yekîtîya Sovetistana berê de, di karê xwe de pisporekî pir hêja û naskirî bû. Mixabin ew di e´rdeheja sala 1988an li Ermenstanê bi keça xwe Leylê ya 16 salî re, canê xwe ji dest dan.

Wezîrê Eşo, piştî bidawî anîna dibistana pêşîn li gundê Pampê( Niha Sîpan) li navça Elegezê (li Ermenistanê), sala 1953an xwîndina xwe ya dibistana navîn jî li bajarê Tiflîsê bi dawî tîne. Di e´ynî salê da, di zankoya(fakltûta) tarîxê ya zanîngeha paytextê Ermenistanê – Êrîvanê - tê pejirandinê û gava ewê bi dawî tîne, salên 1958- 1961ê li gundê Kurda yê bi navê „Pamp"ê wek serokê dibistanê dest bi kar dike. Salên 1961-1963an wek berendamê doktoriyê(zaniyarîyê) beşa Kurdzanîyê ya înstîtûta Rojhilatzaniyê da, li Lênîgiradê( Niha Sankitpêtêrzburg) bi serokatiya Kurdzanê mezin **„Qanata Kurdo"** di nava rûpelên tarîxa Kurdistanê de kûr dibe.

Salên 1964-1983an wek rêdaktor û piştra jî rêdaktorê sereke di radio û têlvîziyon, herwiha di weşana Ermenistanê ya dewletê da jî, kar dike. Salên 1983-1994an karê rêdaktorî û wergervaniyê di beşa „weşanên Kurdî" ya radioya Ermenistanê de, bi cî tîne.

Wezîrê Eşo weke rojnamevan, wergervan û nivîskar ji salên 1950an û pêde, deng daye.

Ji sala destpêbûna weşanên Kurdî yên bi radioyê ya yekemîn di sala 1955an da, ew weke nûçevan û wergervan bi rêdaksiyona wan weşanan re tê girêdanê. Pişra weke şiroçî(komêntator)ê dayîmî jî karê xwe li wir bi awayê ne resimî û resmî, bi cî tîne hetanî nîveka salên 1990an( bi qasî 40 salan).



**Rewşenbîr, Nivîskar û Xizmetkarê Çanda Kurdî Mamosta: Wezîrê Eşo**

Nava wî zemanî da, bi sedan şirovekirin û komêntarên wî di radioyê da, têne weşandinê. Ew li wir herwiha dibe asîstant, şîretkarê rêjîsor jî û tevî wî weke 20 şanoyên radioyê, amade dike û di nav wan de du-duyan li ser bingeha afirandinên xwe yên bi navên **„Deste birak"** û **„Koçekê Derewîn"** jî amade dike.

Ji sala 1937an heya 1955an weşana rojnama **„Rêya Teze"** hat sekinandin. Sedem ew bû ku di navbera dewletên Tirkiyê û Sovyetistana berê( di çaxê Dîktator Istalîn) de, peymanên siyasî û aborî çêbibûn. Geşbûna çanda Kurdan li dijî berjewendiyên dewleta Tirkiyê ya înkarger bû. Di wan salên reş da bakurê Kurditanê di bêdengiyeke tejî tirs de, li jêr zexta generalên Tirk da salên xwe yên herî nexweş derbas dikirin. Ji bona wê jî Kurd li komarên Sovyetistana berê rastî siyaseteke çewta Istalînîstî hatin.

Dema ku di sala 1955an de careke din **„Rêya Teze"** hate waşendinê, mamosta Wezîrê Eşo wek rojnamevan û nivîsakar, girêdanên xwe bi wêra çêkir. Ewî li ser rûpelên wê rojnamê zêdeyî sed gotarên xwe dane çapkirinê. Gotarên ku li ser edebiyat û çanda Kurdî, li ser jiyana Kurdên Ermenistanê, li ser jînenigarî û kar û barên nivîskar û zaniyarên Kurd( weke **Heciyê Cindî, Cerdoyê Gênco, Emînê Evdal, Casimê Celîl, Wezîrê Nadirî,** û yên dinê), hatibûn nivîsandin. Lê ji meha Mijdarê ya sala 1958an gava çîroka wî ya yekemîn bi ser nave **" Beyraqa Sor"** di rûpelên Rêya Teze da tê çapkirinê, ew hêdî-hêdî weke nivîskar jî tê naskirinê. Piştra gelek çîrokên wî yên dinê jî di wê rojnamê da tên weşandinê.

Wezîrê Eşo wek rojnamevan, di nava xwîndevanên Ermenî û Rus da jî, hate naskirinê. Yanî gotarên wî di hemû rojname û kovarên Ermenistanê (Ermenî û Rusî) yên sereke û pir tîraj da, hatin çapkirinê.

Beriya wê(derengtir) ew weke nivîskarekî Kurd, bi çîrokên xwe di nava wan xwendevanan da hatbû naskirinê. Ev nasandin hingî çêbû gava ku ewana li ser rûpelên hemû rojname û kovarên komara Ermenistanê yên edebî bi wergerên Wezîrê Eşo ji zimanê Kurdî bo ser zimanên Rusî û Ermenî, berhemên wî dîtin ku hatibûn bi cîh kirinê.

**Wezîrê Eşo, Radio û Şano**

Wezîrê Eşo xizmeta têatira Kurdî ya gelêrî jî kiriye ku di gundê Ermenistanê yê Kurdan- Elegezê- da hatibû vekirinê. Komêdiya wî ya bi ser navê **" Remo, Şemo, Temo û Lawik"** li ser sehna wê têatirê, hate nîşan danê.

Wezîrê Eşo xwedanê çend pirtûkên novêl, kurte roman, herwiha yên lêkolînîyê û wergerandinê ye jî. **„ Mizgînî", „Dengbêj kal bibû", „Pamp- Sîpan", „Xaçator Abovîyan"** û berhemên wî yên Kurdzanîyê yên bi ser navê **„ Kurd û Êzidî", „ Xebera Dosta"**, tev xwedî mesajên siyasî-civakî ne.

**(Jiyana Rewşenbîr, Nivîskar û Xizmetkarê Çanda Kurdî Mamosta: Wezîrê Eşo)**

*Doma:R.18*

Ji bilî van, çîrok û wergerên wî li ser rûpelên berevok, antolojiya**"Biharê"** jî hatine bi cîkirinê. **„Biharê"** ku di nava zemanekî kifş da, salê carekê li Ermensitanê dihat weşandinê.

Mixabin bervekoke(antolojîyeke) berhemên Wezîrê Eşo ya bi qasî 400 rûpelan ji ber sedemên hilweşana Yekîtiya Sovyetê di çapxanê da, neweşandî ma.

Weke wergervanê berhemên nivîsên pexşan, Wezîrê Eşo gelek afirandinên nivîskarên Ermenî û Rus yên bi nav û deng wergerandine ser zimanê Kurdî û ew di berevokên afirandinên wan nivîsakaran da û herwiha li ser rûpelên pirtûkên ziman û edebiyata Kurdî yên perwerdê jî, dane çapkirinê.

Wezîrê Eşo rêdaktorî û berpirsiyarî ji çend kitêbên nivîskar û zanayên Kurd re nivîsandine. Herwiha şûna kar û pênûsa Wezîrê Eşo di hemû kitêbên perwerdê yên ziman û edebiyata Kurdî yên kesên mîna **Hecîyê Cindî, Qanatê Kurdo, Casimê Celîl, Emînê Evdal, Ordîxanê Celîl**, tê xuyanîkirin.

Bi pêşgotinên wî yên berfireh, çend kitêbên şaêr û nivîskarên Kurda jî, hatine weşandinê.

Ji ber vê keda afirandariyê ya zengîn, Wezîrê Eşo wek endamê **„Yekîtiya Nivîskar û Rojnamevanên Ermenistanê û Yekîtiyên Rojnamevan û Nivîsakarên Yekîtiya Soveyetê"** ya berê, hatiye hilbijartinê.

Wezîrê Eşo yekemîn nivîskarê Kurd bû ku ji ber vê kedê, di sala 1991an de, hêjayî xelata bi rûmet ya yekîtiya nivîskarên Ermenî û sêksyona nivîskarên Kurd ya bi navê „Erebê Şemo" bû.

Wezîrê Eşo li Ermenistanê bi kar û barê xwe yê civakî jî, pir deng dabû. Weke zanayekî dîroka Kurdistanê û pirsa Kurdî, ewî di gundên Kurdan yên wê komarê da, lê ûsa jî li zozanên çiyayê Elegez û Egirîcê ji bona zozaniyan bi sedan sêmînar çêkirine. Ew li Êrîvanê di destpêka salên 1990an weke cîgirê serokê ronakbîrên Kurd yên Ermenistanê hate hilbijartinê. Ew dîsa li Êrîvanê endamê rêdaksiyana rojnama Kurdan ya bi navê„ **Botan"** bû.

Wezîrê Eşo di şevên gelek nivîskarên Kurdan yên rojbûyînê da, bi nivîsandina li ser jiyan û berhemên wan nivîskaran, bi raporên balkêş di vê derbarê de jî, karên hêja kirine. Ew raporên wî di derbarê çend nivîskaran de, mîna mîrasekî dîrokî ne. Bo nimûne wî bi rapora li ser navê" **Xaçator Aboviyan û Gelê Kurd"** di konfêranseke zaniyariyê li Êrîvanê, ew raport pêşkêş kiriye ku ji aliyê çîna rewşenbîr ve pir hatiye ecibandin.

**Wezîrê Eşo û Ewropa**

Wezîrê Eşo piştî hatina li Ewropayê jî karê xwe yê rojnamevaniyê, nivîskarîyê, zaniyarîyê û civakîyê berdewam dike. Bi dehan gotarên wî yên berfireh li ser dîroka Kurdên Soveyta berê, edebiyat û çanda wan, di wan rojname û kovarên Kurdî û Kurdan da(yanî bi zimanên din), herwiha di yên ku li Kurdistanê û beşên dîyaspora Kurdî yên cuda-cuda derdikevin, hatine weşandinê.

Berhemên mamosta Wezîrê Eşo yên wek nivîskar jî di wan da tên çapkirinê: weke kurte romaneke wî ku di sala 2003an de, di cilda **"Antolojiya Çîrokên Kurdî"** ya yekemîn de, hatiye bi cî kirinê.

Wezîrê Eşo li Ewropayê di nava karên xwe yên civakî da jî berdewame. Ewî hetanî niha li Birûkselê weke sed sêmînaran yên ku li ser dîroka Kurdên Soveyta berê û çanda wan hatibûn amadekirin, li darxistine.

Wezîrê Eşo endamê rêdaksiyona rojname û piştra kovara **"Agahdarî"** bû, herwiha pirêsîndêtê şerefê yê rêxsitina Kurdên Qafqaziyayê yên li Bêljîka ye.

Di roja me de Wezîrê Eşo bi zanebûn, tecrûbe, ceribandina domdirêj ya jiyana 70 salan dagirtî, li ser amadekirina çend kitêban li rex hev da, bi cî tîne.

Yên mîna novêl û kurte romanan, ya bîranînan, ya li ser jiyan û karkirina Prof. Qanatê Kurdo, ya ser dîroka Kurdên Sovyeta berê û yên dinê.

Ji apê Wezîr re temenekî dûr û dirêj dawa dikim. Hîvîdarim ku zanayên mîna wî di nava me de hîna jî zêdetir bin.

# Weşana Romanan di formeke nû de



Bi arîkariya teknolojî û pisporiyê, wêje bi awayekî nû dê bigihîje destê xwendevanên xwe. Nivîskareke xelkê welatê Çînê ku vê dawiyê Romana Kurt ya xwe bi navê ***Ji Derveyî Kelê***, ji rêya dezgeha Mobaila xwe ve bo hemberên Romanê li hemû cihekê şandî ye.

Eva di halekê de ye ku ev Romane di çi pirtûkxaneyekê de nahê dîtin. Ev Romane ku ji 4200 tîpan pêk hatî ye, bi awayê desteyî yên 70 tîpî bo xwendevanên xwe tê şandin. Bi vî awayî xwendevanên Romanê dikarin di çaxê 2 rojan de, xwendina wê bi dawî bînin.

Ev pêla nû ya teknolojiyê dikare xwendina pirtûkan di nava xelkê de berfirehtir biket. Her çiqas ku dezgehên Mobailan bikaranîneke zaf hene, lê heta niha jî wek alevek bo xwendina pirtûkên weşandî nehatiye bikaranîn. Kompaniya weşana **hurray.com.cn** ku ev Romane belav kirî ye, rewşek pêk aniye ku aliyê hember ji bilî xwendina pirtûkê li ser rûpela nîşandana Mobailê, bi weşanger re têkiliyê çê bikin û ji Romanê re jî guhdarî bikin.

Ev pêşketina teknolojiyê wek parastina pirtûkê li ser kasêtê ye. Xerca şandina vê Romanê, hemberî xerca hinartina peyam (mesaj)ên Mobailê ye.

agirî
Rojnameyeke siyasî û çandî ye, Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 11, Sep 2004

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
rojnama_agiri@yahoo.com

agiri2003@hotmail.com

Fax: 0012703425105

**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêre, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye teksta serekî ya wê jî, ji rojnamê re bihê şandin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

- Destêwerdana rênûsa nivîsan biket.
- Wan mijar û babetên ku naverokeke lawaz hebin belav neket.

# Xelata mezin ya Festîvala Navneteweyî ya Fîlman a "SAN SEBASTIAN" gihîşte Fîlma Kusî jî dikarin bifirin ya Derhênerê Kurd, Behmen Qubadî



**Di encama 52'mîn Festîvala navneteweyî ya Fîlman a " SAN SEBASTIAN" li Ispanyayê ku di navbera rojên 16-28'ê Septembera 2004'an hate lidarxisitin Fîlma Derhênerê Kurd, birêz Behmen Qubadî ya *Kusî jî dikarin bifirin* (Kîselekanîş detwanin bifirin), wekî baştirîn fîlm, xelata Sedefa Zêr ya vê Festîvalê stand.**

**Rûpela 16**

# Di bîranîna 20'mîn salvegera koçkirina derhêner û fîlmçêkerê kurd Yîlmaz Gûney



**Navê hunermendê derhêner û fîlmçêkê Kurd, Yîlmaz Gûney wekî stêreke geş a Sînemaya Kurdî her dem diçilvile. Wî gelek xizmetên mezin çand û hunera Kurdî kirin.**

**Rûpela 17**

# Dengê Kurdistana Îranê weşanên xwe li ser înternêtê belav dike




**Xwendevanên hêja hûn dikarin bernameyên Dengê Kurdistana Îranê li ser înternêtê guhdarî bikin.**

**Di bernameyên Dengê Kurdistana Îranê de, xêncî nûçe, rapor û gotarên siyasî li ser Kurdistan, Îran û cîhanê, bernameyên çandî, ciwan, jinan û hwd ... tên weşandin.**

**Dengê Kurdistana Îranê hemû rojê, bernameyên xwe ji seet 6:30 heta 8:30'ê êvarê bi dema Tehranê, 1 seet û nîv bi zimanê Kurdî û nîv seet bi zimanê Farsî, li ser hêlên kurt yên 75 mêtrî, hemberî ferekansa 3975 kîlohêrtz belav diket. Roja paştir heman bername, ji seet 6:30 heta 8:30'ê sibê bi dema Tehranê li ser hêl û ferekansa han ducarkî dibe.**

**Adress:**
**http://www.rdki.com**

**E Mail:**
**rdk_iran@yahoo.com**

**FAX:**
**0012706824654**